8 "کاتێک هەستی نیشتمانپەروەری دەبزوێ"

## هەڵدەکوترێتە سەر نووسینگەی حکومەتی کوردستان!

14 سیروان جەمال باسی نهێنییەکەی دەکات



## چۆن لە قوڕ ڕەنگ دروست دەکرێت؟


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora




Naom Chomsky ji Rûdawê re axifî 11

## Daxwazên Kurdan ji yên Misriyan cudatir in


Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 84 | 24 Sibat / Februar 2011


# Kurdistan li ser piyan e

Wêne: DIHA

## Bakur: "Em zimanê xwe dixwazin!"

## Başûr: Çawa Silêmanî bû qada pevçûnan?

Wêne: Rûdaw

2/14 »

## Barzanî dîsa behsa mafê çarenûsê kir

**Roma (Rûdaw) -** Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di merasimekê de ku êvara 22'ê Sibata 2011'an li Romayê pêkhat û tê de gelek berpirsên Ewrûpî jî amade bûn, behsa mafê Kurdan ê ji bo biryardana li ser çarenûsa xwe kir. Merasim ji bo dayîna 'Medaliya Atlantico' bo Mesûd Barzanî ji aliyê NATO'yê û bi arîkariya dewleta Îtalya hatibû sazkirin. Ev medalya yekemîn care ji aliyê NATO'yê ji bo kesayetiyeke cîhanî re tê dayîn û Barzanî yekemîn kes e ku wê xelatê werdigire.

Barzanî di axaftina xwe de dilxweşiya xwe ji ber encamên referandûma vê dawiyê ya Başûrê Sûdanê ku tê de xelkê wî welatî biryara li ser çarenûsa xwe dan, anî ziman û got: "Bawerîya me jî bi wî mafî heye û me di çarçoveya Îraqê de şêweyê federalîzmê qebûl kiriye." Lê got: "Eger sîstema wî welatî berbi dîktatorî û takekesiyê biçe, wê demê ne mumkine em xebat û qurbanîdana gelê xwe ya bi dehan salan belaş berdin." Barzanî got ku di rewşeke wiha de "Em ê maf bidin xwe ku li gor rewşa wê rojê biryara bi kêr bidin û neçin bin barê sitem û dîktatoriyê." Barzanî herwiha ji welatên Rojavayî xwest ku arîkariya Kurdistanê bikin ji bo ku bibe "Mînakeke pirgeştir a azadî û demokrasiyê" û got ku mebesta wî ji arîkariyê "ne hatina şîrket û aliyê darayî ye, lê pêwîstiya me bi arîkariya siyasî heye."









www.rudaw.net
info@rudaw.eu

# Roja Zimanê Zikmakî veguherî xwepêşandanan

**Koln (Rûdaw) -** 21'ê Sibatê Roja Zimanê Zikmakî ya Cîhanê li gelek bajarên Kurdistanê û çendîn bajarên Rojavayê Tirkiyê bi girseyî hat pîrozkirin û hate xwestin ku astengiyên li pêşiya ziman bên rakirin. Kurdan di Roja Zimanê Zikmakî ya Cîhanê li gelek deveran pankartên bi kurdî (kurmancî û kirmanckî) û tirkî rakirin û dirûşmeyên balkêş avêtin û daxuyanî dan. Polîsên Tirk jî li her derê astengî derxistin û li hinek deran rê neda ku gel daxuyaniyan bidin. Li Amed, Riha, Cizîr, Qoser, Dêrsim, Sêrt, Wêranşar, Colemêrg, Îzmîr, Edene, Milazgir û Mexmûrê daxuyanî hatin dayîn. Tişta heri balkêş ew e ku li hemû cîhanê herî zêde Kurdan ev roj bi coş pîroz kirin.

**Dirûşme û pankartên balkêş**

- *Em yek netew û yek ziman naxwazin*
- *Zimanê me çawa wekî zimaneke neyê zanîn tê bi nav kirin?*
- *Zimanê dayîkê, bingeha jiyana xwezayî ye.*
- *Destên dirêjî biratiyê dibin bişkên*
- *Werin em hêviya asîmîlekara di qirkê da bihêlin*
- *Bê zimanî bê imanî ye li zimanê xwe xwedî derkeve*
- *Divê zimanê kurdî bibe zimanê fermî*
- *Em perwerdehiya bi zimanê zikmakî dixwazin*
- *Kurd bi kurdî diaxivin*
- *Bi ziwana wazene*
- *Bê ziman jiyan nabe*

### Ji Roja Zimanê Zikmakî ya Cîhanê çend têbiniyên balkêş:

Meclîsa Bajar a Îzmîrê di 7'ê Sibatê de ji bo Komîsyona Lêkolîna Heqîqet û Edaletê bê avakirin, bi kurdî daxuyanî dabû çapemeniyê. Rêveberê BDP'ê yê Îzmîrê Fuat Mîkaîloglu ji ber daxuyanî bi kurdî xwend, rastî lêpirsînê hat.

Navenda Giştî ya Egîtîm Sen'ê derbarê rewşa zimanên li Tirkiyê di rapora "Di perwerdehiyê de bikaranîna ziman" diyar kir ku rewşa Tirkiyê ji bo pirzimanîyê guncav e û astengiya li pêşiya dewlemendiya ziman tenê hikûmet û dewlet e.

Li Îzmîrê li Sûka Kemeraltiyê li der pol (sinif) hate avakirin û Mamoste Sadettîn Yetîşmîş dersa kurdî da. Nêzî 20 xwendekaran li Yetîşmîş guhdar kirin û tiştên ku wî got dubare kirin.

Endamên Platforma Ciwanan a ji bo Biratiya Gelan li Zanîngeha Teknîkê ya Yildiz li Stenbolê xwestin ku dersên kurdî bidin lê rastî barîkata polîsan hatin. Xwendekarên ji ber barîkata polîsan neketin zanîngehê û li ber barîkata polîsan dersa kurdî dan. Xwendekarên li ber kampusê hatin cem hev û dowzên **"Q, W û X"** hilgirtin.


Wêne: DIHA

**Li Wanê bi dehhezaran bi daxwaza "em zimanê xwe dixwazin" daketin kolanan**

**Meşa xwendevanên Bangladeşî bû rojeke cîhanî**

Roja 21'ê Sibata 1952'an Dewleta Pakîstanê bi daxuyaniyeke fermî diyar kir ku zimanê urdu êdî tena zimanê fermî yê Pakîstanê ye, tevî ku zimanê urdu zimanê zikmakî yê tena ji sedî 3'yê hevwelatiyên Pakîstanê bû. Li Rojhilatê Pakîstanê wê demê tenê zimanê bengalî dihat axaftin. Di xwepêşandana di 21'ê Sibata 1952 li bajarê Dhaka de alîgirên Tevgera Bangalî ya Ziman rastî êrişên polîsên Pakîstanî hatin û çendek xwepêşandêr hatin kuştin. Cudabûna ziman û serdestiya Pakîstanê li ser Bengaliyan li Rojhilatê Pakîstanê bi serxwebûna Dewleta Bangladeşê di sala 1971'an de bi encam bû. Ji wê demê ve roja 21'ê Sibatê li Bangladeşê weke "Roja Şehîdan" tê bîranîn. Li ser daxwaza Bangladeşê, roja 21'ê Sibatê di sala 1999'an de ji aliyê Neteweyên Yekgirtî weke "Roja Zimanê Zikmakî ya Cîhanê" hat pejirandin.

**Di 17'ê Sibatê de ber û gule barîn**

# Parêzgeha Silêmaniyê hejiya

**Silêmanî (Rûdaw) -** Di roja 17'ê Sibata 2011'an de grûpek bi navê 'Tora Parastina Maf û Azadiya Xelkê' bi armanca "pîrozkirina gelê Misir û Tûnisê" çalakiyek girseyî li ber Dergehê Sera li bajarê Silêmaniyê saz kirin û tê de zêdetirî 1000 kesî tevlî bûbûn. Piştî bi dawî hatina çalakiyê hinekan gotin em naçin û piştre slogana "Hilweşe" dest pê kir û xwepîşander çûn ber deriyê liqa 4 a PDK'ê û ev slogan avêtin; "Cehş cehş Barzanî, biterkîne Silêmanî, Wê kursiyê berd e, gel hemû birçî ye, Hilweşe...Hilweşe" û çend sloganên din diavêtin. Paşê meşvanan liqa 4 ya PDK'ê dan ber keviran, hêzên ewlekariyê jî negihan cihê bûyerê. Dema meşvanan xwestin bikevin hundirî buroya PDK'ê, zêrevanan teqe li xwepêşandanan kirin û di vê bûyerê de xortekî 14 salî bi navê Rêjwan Elî hat kuştin. Li gor hinek wêne û vidyoyan, hinek meşvanan jî gule berdane buroya PDK'ê. Berpirsê Tora Parastina Maf û Azadiya Xelkê jî diyar kir ku berpirsên yekem ên vê bûyerê hêzên ewlehiyê ne.

## Bûyeran çawa destpê kir?

Tevgera Goran li Başûrê Kurdistanê di 29'ê Çileya 2011'an de daxuyaniyek belavkir û amaje da serhildanên ku li welatên Ereban çêdibin û bangî xelkê Kurdistanê jî kir ku dema guhertina desthilata Kurdistanê jî hatiye. Goran di daxuyaniya xwe ya 7 xalî de daxwaza hilweşandina Hikûmetê kir. Di êvariya heman rojê de Serokatiya Herêma Kurdistanê bi daxuyaniyekê bersiva Goranê da û diyar kir ku ev daxwazî ne rewa ne û got ku "Her guhertina bê pêkanîn divê bi rêya sundoqên dengdanê be, lê ne bi şêweyên ne destûrî û ne yasayî." Bi şev jî Polîtburoyên PDK û YNK'ê daxuyaniyeke hevbeş derxistin û ev helwesta Goran rexnekirin û diyarkirin ku ew ê dijî "Hêzên darbeçî rawestin."

Li Parêzgeha Silêmaniyê ku ji aliyê Yekîtiya Nîştîmanî ya Kurdistan (YNK) tê birêvebirin, xwepêşanderan di ragihandinên xwe de herwiha daxwaza xizmetkariyan û nehiştina gendeliyê dikirin, lê paşê meşên wan ber bi tundûtûjiyê çûn û di rojên paştir de li gelek bajarokên sinorê wê parêzgehê xwepêşandanên bê molet dewam kirin, herwiha 2 birîndarên din ên bûyera 17'ê Sibatê jî jiyana xwe ji dest dan û hejmara kuştiyan bûn 3, ligel bi dehan birîndaran ji polîs û ciwanan. Li Hewlêr û Soran jî weke reaksyonek hember êrişkirina ser buroya PDK'ê ya li Silêmaniyê, alîgirên wê partiyê êriş birin ser buroyên Tevgera Goran li wan bajaran û têkdan, li Duhokê jî hêzên ewlekeriyê baregeha Goran û ofîsa kanala KNN diparêzin. Rêvebirê Giştî yê Polîsên Duhokê, Weidulla Sêlkî bo Rûdawê got: "Niha 40 polîs û asayiş zêrevaniya baregehê Goran dikin." Her derbarê vê rewşê de, di roja 21'ê Sibata 2011'an de hat ragihandin ku 2 terorîstên xwekuj ji Îranê hatine nav Herêma Kurdistanê û dixwazin xwe di nav girseyên xwepêşanderan de biteqînin.

### Bila xwîna Rêjwan bibe hêvênê aştiyê

Di van deman de gelek aliyan daxuyanî dan û helwestên xwe ragihandin. Bavê xortê kuştî Rêjwan Elî jî bi rêya Rûdawê helwesta xwe ragihand û got: "Ez û malbata xwe ne milkê ti aliyekî siyasî ne, bila ti kes nan û pîvazê bi min ve nexwe. Kurê min hat kuştin û bila bibe havênê aştiyê. Bila ev rewş neyê tevlîhevkirin, ji ber dijminên me zêde ne." Serokê Herêma Kurdistanê, Mesûd Barzanî ku di heman demê de Serokê PDK'ê ye, di 21'ê Sibata 2011'an de ji Ewrûpa bi telefonê sersaxî li bavê Rêjwan kir. Cîgirê Serokê PDK'ê Nêçîrvan Barzanî jî dilgiraniya xwe hember van bûyeran nîşan da û got ku xemsarî ji aliyê hêzên ewlekarî yên Silêmaniyê hebû. Barzanî amaje da ku hin dest li pişt van bûyeran hene ku "Dixwazin em, Goran û YNK hevdu tawanbar bikin, lê em ti kesî tawanbar nakin û em ê li benda komîteya lêkolînê bin."

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemmed Orhan
kaniyajiyane@hotmail.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçi

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

## Ehmed Turk ji Obama re got: Agahdar bin, PKK ne El-Qaîde ye

**Enqere (Rûdaw) -** *Hin dokumentên nû yên malpera WikiLeaks ku rojnameya Daily Telegraph a Brîtanî belav kirine, diyar dikin ku Hevserokê Partiya Civaka Demokratîk (DTP) yê berê Ahmet Turk, di sala 2009'an de, di dema rûniştina wî ligel Serokê Amerîka Barrack Obama li Enqere jê re gotiye ku PKK, ne Rêxistina Qaîde ye.*

*Li gor raporên ku balyozxaneya Amerîka li London di 27'ê Nîsana 2009'an de ji bo balyozxaneyên Amerîka yên li Enqere û Edene şandine, Ahmet Turk di gotûbêjekê de ligel navenda Chatham House a Brîtanî, ku bi lêkolînên li ser siyasetên Rojhilata Navîn taybet e, ji ber ku bi guşaran bersiva serkeftina DTPê di hilbijartinan de û agirbesta PKK'ê daye, hikûmeta Tirkiyê şermezar kiriye.*

*Di belgeyên Wezareta Derve ya Amerîka ku di WikiLeaksê de hatine weşandin, Turk tekez kiriye ku DTP, piştevaniya çareseriya aştiyane ya doza Kurd dike û herwiha daxwaza danîna destûreke nû li Tirkiyê dike, ku tê de mafê hemû kêmneteweyan bê naskirin.*

*Li gor yek ji van raporên nehênî yên ku hatine eşkerekirin, peyamnêrekî Tirk pirsiyarekê ji serokê DTP'ê dike û dibêje: "Çima gava Obama PKK'ê wek rêxistineke terorîst pênase dike, ti helwesta we nîne, lê gava Tirkiye ji PKK'ê re dibêje terorîst, hûn bersivê didin?" Ahmet Turk jî di bersiva vê pirsiyarê de dibêje: "Di civînê de Obama PKK wek rêxistineke terorê wesif nekiriye, lê em dizanin ku PKK di lîsteya rêxistinên terorîstî ya Amerîka de hatiye danîn."*

*Herwiha di wê civîna navbera Turk û Obama de, Ahmed Turk ji serokê Amerîka re dibêje: "Divê hûn ji anîna navê van grûban agahdar bin û PKK ne El-Qaîde ye. Eger Tirkiye di meseleya mafê gelê Kurd de dadmend û vekirî bûna, grûpek bi navê PKK'ê nedibû. Mesele ew e ku Tirkiye naxwaze dozê bi awayekî aştiyane çareser bike."*





# Ji Kurdên Bakur helwesta yekîtiyê

Beriya hibijartnan nûnerên hêzên siyasî yên Kurdên Bakurê Kurdistanê hatim cem hev û derbarê helwesteke netewî de boçûnên xwe diyar kirin




**Firat Baran** Enqere

Kongreya Civak a Demokratîk (KCD), bi armanca yekîtiya Kurdên Bakurê Kurdistanê gavek balkêş avêt. KCD bi partiyên Kurd BDP, HAK-PAR, KADEP û saziyên sivîl ên civakî re hevdîtinan çêkir û ji bo hilbijartinên 12 Hezîranê pêşniyaza diyarkirina namzetên hevbeş kir. Partiyên Kurd jî bi erênî nêzikê pêşniyazê bûn û ragihandin ku di hilbijartinê de hevkariyeke wiha wê rêya yekitiya netewî veke.

### Coşgun: Em bi çavekî stratejik lê yekitiyê mêzedikin

Berdevkê KCD'ê Cemal Coşgun, destnîşan kir ku di pirsgirêka Kurd de ji bo aştî û çareseriyeke demokratîk gava herî girîng yekîtiya Kurdan bi xwe ye û wiha dom kir: "Em yekitiya Kurdan wek gaveke stratejîk dibînin. Em yekitiyê bi hilbijartinan ve girênadin, lê divê neyê jibîrkirin ku hilbijartin jî ji bo yekitiyê dibin bingeh."

Coşgun da zanîn ku bi beşdariya DTK, BDP û çendîn saziyên sivîl Komisyona Hilbijartinê hatiye damezirandin û got wê komisyon ji her aliyên Kurdan berendaman diyar bike. Coşgun armanca hevdîtina wan bi partiyên Kurd re jî anî ziman û got di hevdîtinê de wan ji hemû aliyan xwestine ku bi rengekî çalak tevlî pêvajoya diyarkirina berendaman bibin û nûnerên partiyan jî helwestên erênî nîşan dane. Coşgun got: "Eger di hilbijartinan de yekîtî bê damezirandin wê ev gav ji bo yekitiya Kurdan bibe bingeheke girîng." Coşgun herwiha da zanîn ku ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd niha firseteke dîrokî derketiye û got bi armanca yekitiya Kurdan wê hevdîtinên xwe bidomînin.

### Kişanak: Yekîtiya Kurdan ji bo me girîng e

Hevseroka BDP'ê Gultan Kişanak jî got ew di çareseriya pirsgirêka Kurd û wergirtina mafê Kurdan ên demokratîk de alîgiriya tevgereke hevbeş dikin. Kişanak got ev salekî ye ku ew helwesteke wiha nîşan didin û ji bo perwerda bi zimanê zikmakî bi partiyên din re kampanyaya îmzeyan birêvedibin.

Kişanak jî wek Coşgun hilbijartina ku wê di Hezîrana îsal de bê kirin, ji bo yekitiya Kurdan pêvajoyeke gelek girîng dibîne û got, "Yekitiya ji bo hilbijartinê ne rojeva me ya sereke ye, lê em li ser wê yekê guftûgo dikin ku di rêya yekitiya Kurdan da hilbijartin dikarin roleke çawa bileyzin. Em wek BDP'ê di tekoşîna ji bo mafstandinê de tevgera Kurdan a hevbeş girîng dibînin."

**Nûnerên partiyên Kurdan hemû jî di heman baweriyê de ne ku rêya yekitiya netewî di hevkariyên wek hilbijartinan de derbas dibe. Lê ji bo îttîfaka hilbijartinê hê tiştek zelal xuya nake.**

### Elçi: Cudatiyên di navbera me de hebûn, kêm bûn

Serokê Giştî yê KADEP'ê Şerafettin Elçi yekitiya Kurdan karê herî girîng binav kir û got hemû Kurd bi deh salan e doza vê yekê dikin. Elçi got, "Ji bo vê çi bikeve ser milê me em amade ne ku bikin." Serokê Giştî yê KADEP'ê Elçi got ew pêşniyara KCD'ê ya yekitiya ji bo hilbijartinê gelek bi wate dibînin û got di paşerojê de di navbera wan û xeta BDP'ê de cûdahiyên programatîk hebûne, lê di demên dawî de cûdahiyên wiha kêm bûne û wiha dom kir: "Siyaseta BDP'ê ya niha ku parastina perwerda bi zimanê zikmakî dike, siyaseteke ku em jî bi salan e diparêzin. Me diparast ku Kurd xwe bi xwe birêvebibin û ji bo ve jî me daxwaziya federasyonê dikir. BDP jî di demên dawî de daxwaziya xweseriyê dike. Dibe ku modelên me cûda bin, lê derbarê birêvebirina Kurdan de, em wek hev difikirin. Ev faktor jî hevkariya me hêsantir dike."

### Bozyel: Hilbijartin firseteke baş e

Serokê Giştî yê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel jî ragihand ku helwestên yekitiya netewî heta nekevin nav pratîkê ti wateya wan tune ye û got, "Yekitiyên ku nekevin jiyana rojane û nebin pratîk wê hertim li ser kaxizan bimînin."

Li gor baweriya Bozyel hevkariya hilbijartinê wê karibe bibe wek firseteke yekitiya netewî ya Kurdan. Bozyel da zanîn ku di hevdîtina bi nûnerên KCD'ê re wan nêrînen hevbeş anîne ziman û wiha axivî: "Em jî wek nûnerên KCD'ê difikirin ku dema çareseriya pirsgirêka Kurd hatiye. Ya herî girîng jî ew bû ku kêmasiyên berê bi zimaneke erênî anîn ziman. Em hêj di destpêkê de ne, ne hêviyên me yên zêde hene, ne jî em dixwazin vê hewldanê piştguh bikin. Divê hevkariya me li ser bingeha wekheviyê be û hemû cûdahî wek dewlemendî bên dîtin û ti alî xwe li ser aliyên din nebîne. Piştî ku em di Dezgeha Serokatiya partiya xwe de vê pêşniyazê binirxînin, em ê dîsa bi wan re rûnin û biaxivin."


Wêne: DIHA

### Tevî ku li bakûrê Kurdistanê gorên komî eşkere bûn

# Ji 114 gorên komî, tenê 26 hatine vekirin

Hêmin Xoşnaw
Bûrhan Nawpirdanî

Şaxê Amed ê Komeleya Mafê Mirovan (İHD)'ê di raporekê de hejmara qûrbaniyên "Kiryar Nediyar" û cihê gorên komî ên navbera salên 1990-2010'an de eşkere kir, lê berpirsê wê komeleyê ji Rûdawê re daxûyand: "Hejmara gorên komî û qûrbaniyan ji hejmara ku di rapora me de cih girtî, hîn zêdetir e."

Li gor rapora IHD'ê, heta niha hestî û perasiyên 1469 kesan hatine dîtin. IHD'ê herwiha ragihandiye ku li bakûrê Kurdistanê 114 gorên bi kom hene, ji wan tenê 26 gor hatine vekirin û 171 term jê derxistine.

Serokê İHD'ê Racî Bîlîcî diyar kir ku komeleya wan zanyarî derbarê hebûna 88 gorên bi kom de heye û dadgeh jî ji vê yekê agahdar kirine, lê ji wan goran tenê 26 gor hatine vekirin. Bîlîcî got: "Di nava van gorên komî de termê 1298 kesan hene. Gora herî biçûk termê 3'ê kesan tê de ye. Hinek gorên wisa hene ku 73 gerilayên PKK'ê tê de hatine bicihkirin. Ev gor li Dola Qesaban e û dikeve başûrê bajarê Sêrtê."

▶Şahidekî bûyerê: Min leşker dîtin dema çalek dikolan û dema wan ez dîtim, gef li min xwarin ku ew ê hevjîn û zarokên min bikujin.

▶Komela Mafê Mirovan (IHD) Şaxê Amed ê: Eger em hejmara gerilayên PKK'ê bixin ser, hejmara qurbaniyan ji 30 hezaran zêdetir e.

### 15 hezar û 500 kuştinên kiryar ne diyar hene

Emîne Eken yek ji şahidên bûyerê ye û ji gundê Semla yê girêdayî Bidlîsê ye, ji Rûdawê re got: "Di şeveke havîna sala 1995'an de, ez çûm dolek nêzî gundê me, min çend leşker dîtin ku di wê dolê de bi kolana çalekê ve mijûl bûn. Dema ez dîtim, gef li min xwarin ku eger ez eşkere bikim, wê hevjîn û zarokên min bikujin. Ji ber vê yekê ez heta sala 2002'an bêdeng bûm. Piştre ez çûm serdana İHD'ê û piştî çend rojan min bihîst ku 3'ê kes ji gundê Kavare winda bûne."

Li gor îstatîstîkek a dewlet û İHD'ê zêdetirî 15 hezar û 500 qûrbaniyên kiryar nediyar hene. Piştî eşkerebûna grûpên girêdayî Ergenekonê, girêdayî artêşa Tirk in, hêdî-hêdî eşkere dibe piraniya wan kesan ji aliyê van grûpan hatine terorkirin. Heta niha jî cihê termê hinek ji wan nediyar in.

Bi baweriya Racî Bîlîcî hejmara qûrbanî û gorên bi kom ji vê yekê gelek zêdetir e; "Hejmara gorên komî ji 500 goran zêdetir e. Hejmara qûrbaniyan jî eger em hejmara gerilayên PKK'ê bêxin ser, ji 30 hezar qûrbaniyan zêdetir e." Bîlîcî derbarê çareserkirin û eşkerekirina hemû qûrbaniyan de dibêje: "Çareserkirina vê meseleyê girêdayî eşkerekirina cih û hejmara gorên komî ji aliyê hikûmetê ye. Piştî eşkerekirinê, damezirandina bankek taybet ji bo tanzîmatkirina kesên ku zerer dîtin. Dewlet bi vî awayî dikare wê dvosyeyê bigire, di heman demê de wê ev pêngav çareserkirina pirsgirêka Kurd jî leztir bike."




Di nexşerêya jor de li gor herêman gorên komî ku hîn nehatine vekirin û tê de estiyê çend kesan hene, hatine nîşandan. 88 gorên komî hê li benda vekirinê ne. (g: Gor, k: Kes)

**Berdevkê HPG'ê: Hikûmeta AKP'ê bi hemû şêwazekê hewl dide komkûjiyên ku 30 sale li dijî Kurdan hatine kirin, veşêre.**

Tevî ku hikûmeta AKP'ê dan bi hebûna wan qûrbaniyan datîne û dibêje ku ew ê kesên ev kar kirine dadgeh bikin, lê li gor Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK), Partiya Aştî û Demokrasî (BDP), AKP'ê bi veşartina vê mijarê gunehbar dikin û dibêjin, tenê demê derbaz dike.

Berdevkê Hêzên Parastina Gel (HPG)'ê Dozdar Hemo di daxûyaniyekê ji bo Rûdawê got: "Hikûmeta AKP'ê bi hemû şêwazekê hewl dide komkûjiyên ku 30 sal e li dijî Kurdan hatine kirin, veşêre. Qûrbanî bi awayek neşaristanî hatine veşartin, bi awayek ku berevajî hemû yasa, kevneşopî û bingehên mafên mirovan e."

Berdevkê HPG'ê bi awayek tûnd rexne li Hikûmeta Tirkiyê digire ku, "Dixwaze projeya vekirina demokrasî li ser estî û perastiyê bisedan qehremanên gelê Kurd ên di gorên bi kom de hatin bin axkirin, encam bide.."

### Yasa rê didin, hikûmet astengiyan derdixe

Bi baweriya xizmên qûrbaniyan ên li bakûrê Kurdistanê, hikûmet ne di xema eşkerekirina vê tawanê de ye û belkî dixwaze serî lê bigire. Ekrem Balçîn ji navçeya Norşîn a Bidlîsê ye. Li sala 1997'an birayek wî yê bi navê Hemze Norşîn ku gêrilayê PKK'ê bû, di şerek navbera artêşa Tirk û PKK'ê de hat kûştin. Wê demê bi rêya Med Tv zanî ku birayê wî hatiye kûştin. Ekrem dibêje: "Ez wê demê ez çûm serdana hemû saziyên mafê mirov û hikûmetê, ji bo cihê veşartina birayê xwe bizanim, lê bê sûd bû. Berî 3'ê mehan me bi rêya karkerên şaredariyê zanî ku ew li cihek nêzî Berê Kevin hatine veşartin, lê heta niha dadgehê biryara vekirina gora wan nedaye."

Ekrem Yalçin berpirsê navçeya Norşîn a BDP'ê ye û dibêje: "Ez ê şikayita kesên ku termê birayê min veşartine bikim. Eger dewlet bêdeng bû, wê demê ez ê serî li Dadgeha Mafê Mirovan a Ewrûpa bidim."

Parêzerê xizmê qûrbaniyan Serdar Çelebî derbarê vekirina gorên bi kom de dibêje: "Yasayên Tirkiyê nikarin rê li vekirina van goran bigirin. Lê hikûmet bi rêya dadgehê hewl dide ku astengiyan li pêşiya vekirina van goran derxe. Mînak, dema ji bo vê armancê diçî gel dadwerekê, dibêje ne karê min e. Me biryar daye ku vê dosyeyê bibin DMME'yê."

### Arzu: Hemû tewanbar di girtîgehê de ne

Hikûmeta Tirkiyê bi serokatiya R. Tayîb Erdogan dibêje, ew li ser eşkerekirina çarenivîsa qûrbanî û dadgehkirina tawanbaran berdewam in. Lê parlementerê AKP'ê yê Amedê Kutbettîn Arzû di daxûyaniyek a ji bo Rûdawê diyar kir ku, ew di nava hewldanê de ne û ji bo siyasîkirina wê meseleyê bi gûman in: "Ji bo dîtin û eşkerekirina çarenivîsa qûrbaniyan, me hemû hewldan dane pêşiya xwe. Tawanbar di girtîgehê de ne û tên dadgeh kirin. Ez gûmanê ji bê alîtiya wan kesan dikim ku dibêjin, hikûmet astengiyê dixe pêşiya dîtin û vekirina goran."

Arzû derbarê pêşniyara İHD'ê ya ji bo damezirandina bankek taybet ji bo tanzîmatkirina kesên zerer dîtin, dibêje: "Tirkiye welatek yasayî ye û hemû karên xwe li gor yasayê rêkûpêk dike. Kesên xwediyê wê fikrê, bila daxwazê ji parlementoyê bikin, heya guftûgoyan li ser bikin û jê re biryarên pêwîst bidin."

### Siyasetmedarên Sûriyê sedemên bêdengiyê dinirxînin:

# Sedem serma ye an bê bawerî ye?

▶Xemgîn Dêrikî: Astenga herî mezin a li pêşiya raperîna gel bê baweriya gelê Sûriyê bû

▶Ebdulrezaq Îd: Nifşê ku piştî salên 1980'an derketiye bi qasî ku birçiyê maf û azadiyê ye, ewqasî ne birçiyê nan e

**Hêmin Xoşnaw** Hewlêr



Hejmara daniştvanên Sûriyê 22 milyon e û ji bilî Ereb û Kurdan, Aşûrî û Ermenî jî dijîn

Her çiqasî heta niha li Sûriye tevgereke ciddî ya serhildanê li holê nîne jî, lê bi baweriya çavdêrên siyasî Sûriye jî ketiye nav bazinê destpêkirina raperînê.

Hejmara daniştvanên Komara Erebî ya Sûriyê 22 milyon kes in û ligel hebûna rêjeyeke berçav a Aşûrî û Ermeniyan, piraniya daniştvanan Misilman in. Di heman demê de hejmara Kurdan li Rojavayê Kurdistanê wek 3 milyon kesan tê texmînkirin. Piraniya Erebên Sûriyê Sunî ne, lê desthilat di destê malbata Esad de ye, ku Elewî ne.

Desthilatdarên Sûriyê hemû serhildan bi rêya artêşê têk birine. Ya herî girîng serhildana Sunniyan li bajarê Hemaa bû ku bi serokatiya rêxistina Birayên Misilman di sala 1980'an de derketibû û nêzîka 30 hezar kesan tê de bûn qurban, Herwiha di serhildana bajarê Helebê de jî 2500 kuştî hebûn. Herwiha di serhildana 13'ê Adara 2004'an a Qamişlo û bajarên din ên Rojavayê Kurdistanê de 60 Kurd hatin kuştin û 200 kes birîndar bûn û 3 hezar kes jî hatin girtin, ku di vê serhildanê de bajarê Amûde du rojan hat azadkirin.

## Artêşa Sûriyê hemû serhildan têk birine

Piştî serhildana gelê Misr û Tunusê, dengê lingê serhildana cemawerî hat ber deriyê Sûriyê jî. Her çiqasî dihat çaverêkirin serhildana cemawerî zûtir li Sûriyê destpê bike, nemaze jî di roja 5'ê Sibatê de, ku ji aliyê hinek komele û grûban wek `Roja Hersê` li Sûriyê hatibû destnîşankirin, lê tenê li ser rûpelên internetê ma û negihişt ser kolanan.

**Li Sûriyê yekhîzbî serdest e û rê li ber jiyana siyasî digire.**



Ebdulrezaq Îd

Bi baweriya çavdêrên siyasî hovîtiya rêjîma Sûriyê derheqê dijberên wê, çavê civakê şikandiye, lewra jî xelk newêre serî hilde.

Bi nêrîna Endamê Civata Partiya Wîfaq a Kurdî li Sûriyê Xemgîn Dêrikî, astenga herî mezin a li pêşiya raperîna gel bê baweriya gelê Sûriyê ji serkeftina serhildanê bû: "Bawerî bi serkeftinê û bi civaka Sûriyê nîne."

Herwiha Ebdulrezaq Îd, ku daniştvanê derveyî Sûriyê û Serokê Civata Ragihandina Şamê ye, diyar dike eger ji bo serhildanê radeya dîktatorî û hovîtiyê pîvanek be diviyabû gelê Sûriyê ji zûve serî bihilda: "Ev zêdeyî 40 salan e jêrxana siyasî li Sûriyê tê têkdan. Ji dema Partiya Baasê hat ser desthilatê heta îro yekhizbî serdest e û rê li ber pirbûna partiyan û jiyana siyasî girtin."

## Bi civaka Sûriyê û bi serkeftinê bawerî nîne

Li Sûriyê gelek mezheb û netewe hene, lê di navbera wan de ti hevbendî nîne. Di dema serhildana gelê Kurd a di sala 2004'an de, êlên Erebî berî hêzên ewlekariyê û artêşa Sûriyê êriş kirin ser xwepêşanderên Kurd.

Xemgîn Dêrikî, wiha axivî: "Elawî dibêjin eger raperîn çêbibe, wê tê de biçin û heyfa Esad ji wan bê hilanîn. Têkiliyên Turkmenan ligel Ereb û Kurdan ne xweş in, loma bi guman berê xwe didin serhildanê, Ermenî û Aşûrî jî bi heman awayî."

Xemgîn sedemekî din ê nerabûna gelê Sûriyê di 5'ê Sibatê de bi sermaya zivistanê ve girêdide: "Sermayê wisa kir ku niha xelk li Sûriyê serî nehildin. Niha bi taybetî bi şev pileyên sermayê di bin sifirê de ne, loma mabûna xelkê li derve pir dijwar e."

Endamê Polîtburoya Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê Ebdulbaqî Yûsiv, sedemên ku Xemgîn Dêrikî behsa wan dike red nake, lê di heman demê de dibêje nebûna zexteke ciddî ya derveyî li ser rêjîma Sûriyê sedemekî serekî ye: "Bi salan e Amerîka ji bo piştgirîkirina saziyên civaka sivîl li Misrê û ji bo bihêzkirina meseleyên demokrasiyê, 20 milyon dolar terxan dikir. Lê ev yek li Sûriyê nîne. Heta îro ti zexteke ciddî ya navdewletî li ser Sûriyê nîne."

## Sûriye jî ketiya nav bazinê serhildanê

Lê bi dîtina Îd, li gor gelê Misrê, civaka Sûriyê hê zêdetir hatiye paşguhxistin, ji ber li Misrê çend partiyên opozîsyonê hebûn, dikaribûn bên ser kolanan û li dijî Mubarek sloganan dijî bavêjin: "Serhildana Misrê bi hevkarî û piştgiriya saziyên civaka sivîl ve ne girêdayî bû. Sûriye ketiye nav bazinê welatên ku serîhildidin, ji ber niha nifşê ciwanên piştî salên 1980'an bi qasî ku birçiyê maf û azadiyê ye, ewqasî ne birçiyê nan e."

Derbarê dema destpêkirina serhildanê li Sûriyê, Îd wiha axivî: "Eger xwepêşandan li Îranê berfireh bibin, wê bandoreke zêde û rasterast li ser Sûriyê bikin û raperîn destpê bike."



**Bayram Ayaz**

## Kurd çi dixwazin, ka nexşe û bername?



Şoreşên dijî rejîmên diktator berdewam e. Du ketin, çendek li ber ketinê ne, hinek jî di dorê de ne. Bandoreke zencîrî peyda bûye û kes nikare êdî pêşî li van serhildanên azadîxwaz bigire.

Tişta diqewime, statukoya piştî Şerê Cîhanê yê duyemîn li bakurê Afrîka û Rojhilata Navîn jî têk diçe. Ev pêvejo wê çawa berdewam be, mirov nikare tiştekî bêjê. Lê di çend salên pêş de li Rojhilata Navîn wê gorînên siyasî û civakî yên mezin biqewimin. Rojhilata Navîn kilîta gorînên serdemên nû ye. Heta Rojhilata Navîn aram nebe, li dinyayê îstiqrar pêknayê.

Kurdistan li Rojhilata Navîn welatekî parçekirî ye. Doza gelê Kurdistanê bandorê li ser çarenûsa çar dewletan dike.

Piştî Şerê Cîhanê yê yekemîn û duyemîn miletê Kurd qet tiştekî bi dest neanî. Welat parçekirî, xelkê Kurd jî bê maf û azadî ma.

Nuha? Nuha Kurd çi dixwazin? Ji bo ku ji vê pêla serhildanên azadîxwaz sûdê werbigrin, bernameya Kurdan çi ye? Kurd jî wê derkevin ser kolanan? Fersendên zêrînî derketiye pêşiya tevgera Kurd. Nabe ev fersend ji dest biçin.

Dem hatiye ku gelê Kurd doza mafê çarenûsî bike. Eger îro Kurd bi metodên aşitiyane bi vê daxwazê derkevin meydanan, dikarin bi hêsayî doza xwe bigihînin dinyayê. Ka ji bo vê çi bername heye?

Li Başur tevgera "Goran" ketiye dû planên têkdana dezgehên Kurdistanê. Baş e, bo çi daxwaza mafê çarenûsî nakin? Bo çi xelkê Kerkûk, Germiyan, Xaneqîn, Mûsil, Şêxan, Şengal, Zimar, Mexmûr, dernaxin ser kolanan? Ji sedî 40'î zêdetir axa Kurdistanê bi Bexdayê ve girêdayî ye, negihaye ser îdara Kurdistan. Şûna ku van deran azad bikin, îdara Kurda li Silêmaniyê têkdidin! Ma ev e şoreş û serhildan? Têk nedin, ava bikin.

Em werin bakurê welat. Hêza Kurd ya herî mezin PKK/KCK/KCD/BDP çi dike ne diyar e. Her carekî proje pêşniyariyeke nû radigihînin, piştî demekî ew bi xwe projeya xwe "jibîrdikin". Xeteke wan bi îstîqrar tûne. Doza konferanseke netewî dikin, lê li Bakur ji xeynê xwe kesî qebûl nakin! Bi siyaseta xwe ya teng Kurdan didafînin berbi AKP'ê! Li Tirkiyê hilbijartin û gorîna zagona bingehîn di rojevê deye. Ji bo mala Kurd lihev be û dengê Kurd yek be, qet tiştekî nakin! Ka nexşe û bername?

Serokwezîr Erdogan salek berê got 'Burkay dikare vegere, asteng tune'. Wezîrê Navxweyî Beşîr Atalay jî telefonî min kir û pirsî 'çima venagerî?' û got 'ji bo vegera teasteng tune. Vêca ez çima venegerim?



# Kemal Burkay li ber vegerê ye?

Derbarê îdiayên dawî yên ku dibêjin Sekreterê PSK'ê yê kevin Kemal Burkay wê vegerê Tirkiyê, Rûdawê xwe gihand Kemal Burkay. Burkay behsa pêşveçûnên dawî li Tirkiyê û pêvajoya pirsgirêka Kurd kir û destnîşan kir ku gelek kesên din jî êdî vedigerin Tirkiyê, ew êdî çima venegerê?

**Di van rojên dawî de di çapameniyê de tê îdia kirin ku we gotiye hûn ê piştî hilbijartinê vegerin Tirkiyê. Gelo astengên zagonî li ber çûyîna siyasetmedarên Kurd ên ku di rewşa we de ne, hatine rakirin?**

**Kemal Burkay:** Gelek kesên ku piştî 12 Îlonê ji ber sedemên siyasî derketibûn derveyî welat, rêvebirên gelek partiyan jî di nav de, vegeriyan welat, yan jî dikarin bi serbestî biçin û bên. Di nav wan de gelek hevalên min jî hene, ji ber ku me sîleh bi kar neaniye û kar û xebata xwe bi rêyên aştîxwaz kiriye. Heta do hildana navê Kurdan qedexe bû, îro pirsa Kurd li her derê bi serbestî tê guftûgokirin, êdî li welat jî gelek saziyên Kurdan hene. Heta partiyek mîna HAK-PAR'ê ku ji bo Kurdan federasyonê dixwaze heye. Televîzyoneke dewletê hemû rojê bi kurdî weşanê dike. Mesajên min bi xwe di gelek kovar, rojname û televîzyonan de bi serbestî tên weşandin. Divê mirov van guhartinan bibîne. Serokwezîr Erdogan salek berê got 'Burkay dikare vegere, asteng tune'. Wezîrê Navxweyî Beşîr Atalay jî telefonî min kir û pirsî 'çima venagerî?' Her wiha got ku ji bo vegera min ti asteng tune. Vêca ez çima venegerim? Vaye ji 30 salî zêdetir e li derveyî welat im û ji bo kêfê ji welatê xwe derneketime. Ger ji bo vegerê rewşeke wiha hebe, çima venegerim?

Helbet pirsa Kurd hîn çareser nebûye û kar û xebat û têkoşîn berdewam e. Lê dixwazim êdî li welat bim û li wir pişt bidim berxwedana gelê xwe, berxwedana ji bo azadî û demokratiyê. Ger rîsk hebe jî, ne tenê ji bo min e, ji bo her kesî ye.

**Hûn ê çima piştî hilbijartinan biçin? Gelo ger hûn berê hilbijartinan biçin û ji bo partiyeke nêzîkî xwe xebat bikin, baştir nabe?**

Karên min ên berdest hene ku divê xilas bikim, bi taybetî karên bîranînên xwe (cild 3 û 4), divê beriya vegerê temam bikim. Ez dikarim di derheqê hilbijartinê de bîr û baweriyên xwe li derveyî welat jî bînim ziman.

## Dibe ku niyeta AKP'ê bikaranîna me be, lê ez û Şivan em ne zarok in

**Hin nivîskar û siyasetmedarên Kurd di van rojan de dinivîsin ku AKP bi siyasetvan û rewşenbîrên Kurd, û bi taybetî bi we û Şivan Perwer re, dikeve pêwendiyê ku we ji bo polîtîkaya xwe, ji bo qelskirina siyaseta Kurdan bikar bîne?**

Dibe ku niyeteke wiha ya AKP'ê hebe, lê ez û Şivan jî em ne zarok in, jiyana me û kar û xebata me, berhemên me li meydanê ne. Çi li hundirî welat, çi li derveyî welat, em ji xwe bawer in. Yên ku siyaseta xwe li gor daxwaza dewlet û hikûmeta Tirk qels kirine û dikin ne em in û bila raya giştî ya Kurd ji bo me dilrehet be.

**Ji ber ku Şivan dixwest derkeve TRT-6'ê, ew rastî êrîşan hat, hûn vê çawa dinirxînin?**

Ev êrîş neheqiyeke mezin e. Şivan hunermend e û dikare stranên xwe li her derê bêje. Ew stranên kurdî ne û TRT-6 jî bi kurdî weşanê dike. Gelek hunermend û rewşenbîrên Kurd îro di TRT-6'ê de bernameyan çêdikin, ev xizmeteke mezin e ji çand û zimanê kurdî re.

**Hûn jî derketin TRT-6'ê, gelo derketina wê televizyonê çima ewqas dibe pirsgirêk?**

Belê ev cara duyemîn e ku ez derdikevim TRT-6'ê. Herdu hevdîtin jî li Stokholmê çêbûn. Min di van herdu bernameyan de bîrûbaweriya xwe li ser zimanê kurdî û li ser siyasetê got. Çima nebêjim? Rojname û televîzyonên bi zimanê tirkî jî bi dehan caran bi min re reportaj çêkirine û weşandine. Ma ev gunehkarî ye? Çi dibêjim ew girîng e û di vî warî de serbilind im, min ti car li gelê xwe û bîr û baweriyên xwe bêbextî nekiriye, lê yê ku ji van tiştan aciz dibin ne dilpak in. Çavê wan pê ranabe ku li dervayî wan deng hebe, naxwazin rastî bên eşkerekirin, ev jî ne çîroka îro ye, ya salan e.

**Dîsa di çapemeniyê de tê behskirin ku AKP'ê xwestiye hûn ji bo TRT-6'ê şêwirmendiyê bikin? Ji bo we teklîfek wiha hatiye?**

Ev gotinên wiha derew in, teklîfek wiha ji min re nehatiye û ez jî ne li benda tiştekî wiha me.

**Hûn ê biçin welat, hûnê bi giranî çi bikin?**

Karê ku îro li derveyî welat dikim, li hundir jî bi giranî ez ê wî karî bikim. Binivîsim û bîrûbaweriyên xwe bêjim.

***Hevpeyvîn: Seyîdxan Kurij***

# Kurdên Holanda amadekariyên hilbijartinên Civatên Parêzgehan dikin

**Wladimir van Wilgenburg**

Kurdên Holanda xwe ji bo hilbijartina Civata Parêzgehên Holanda amade dikin. Roja 2'ê Adara 2011'an wê ev hilbijartin pêk bê. Namzetê Kurd Guhdar Mehsûm ku ji Partiya Karkerên Holanda (PvdA) ye li parêzgeha bakûrê Holanda, di civîna heftiya borî li Amsterdam daxwaz ji Kurdên rûniştvanên Holanda kir ku dengê xwe bidin Partiya wan a Çep; "Ji bo zextan li hikûmeta Holanda ya rastgir bikin."

Ji bo partiyên rastgir û partiyên çep ên opozîsyonê jî li Holanda vê carê civata parêzgehan wê ji bo diyarkirina çarenivîsa siyasî rolek yekalî bileyîzin, ji ber ku hikûmeta niha ya Holanda hikûmetek kêmanî ye û pir pêwîstî bi wê yekê heye ku civata Pîran a Holanda piştgiriyê bidê. Eger di wê hilbijartinê de partiyên çep serbikevin, wê li civata Pîran jî nûnertiya wan zêde bibe û bi wê sedemê jî hikûmeta rastgir wê bikeve bin zextê û kêmtir piştgirî jê re bê kirin. Endamekî din ê wê partiyê Frans Tîmermans di semînarê de soz da Kurdan ku partiya wî di dahatûyê de wê li dijî her proje-yasayek raweste ku Kurd jê hez nekin, Tîmerman got: "Em ê di dahatûyê de derbarê penaber û koçberiyê de rojek girîngtir bigrin dest."

Guhdar Mehsûm dixwaze ji bo "Tevayî Kurdan" kar bike, pisporên Holandî bibe Kurdistanê, lêkolîna rola Hikûmeta Holanda di alîkarîkirina rejîma Seddam Hûseyîn de bo berhemanîna çekên kîmyayî pêk bîne, tevî ku sala 2007'an bazirganê Holandî Farns Fan Anrat ji aliyê dadgeha wî welatî ve ji ber tevlîbûna di tawanên şer de wek tawanbar hat naskirin, lê Mehsûm dibêje "Ev ne bes e." Herwiha eşkere dike ku :"Pêwîst e em li Holanda li ser lobiyek Kurdî kar bikin. Ermeniyên li vê derê nêzî 4 hezar kes in, lê karîn û bandora wan ji Kurdan pir zêdetir e, tevî ku Kurd nêzî 120-180 hezar kes in." Lê parlamenter Frans Tîmerman tekezê li ser wê yekê dike ku Partiya Karkerên Holanda ji bo hemû Holandiyan e û ne taybet ji bo Kurdan e.

# Malbata Yalçin li doktorekî serbixwe digere

▸Ev bû mehekî zarokê wan Kerem li cem malbateke Alman e

▸Ji bo zarokên xwe dîsa bînin mal, li himberê Jugendamtê doz vekirin

▸Niha pêdiviya Malbata Yalçin bi rapora doktorekî serbixwe heye

**Mehmet Sebatli** Bochum



Pirsgirêka di navbera malbata Yalçin û Jugendamt a bajarê Bochumê de ev bû mehek bêyî çareseriyê didome û zarokê yek salî Kerem û dayîka xwe Filiz Yalçin hê jî negihane hev. Malbata Yalçin bi armanca ku zarokên xwe dîsa bînin mala xwe, li himberê Jugendamt a Bochumê (Saziya Ciwanan) doz vekir, lê Dadgehê jî çareseriyek nedît. Faysal Yalçin ragihand ku Dadwer ji wan re gotiye an divê doktorek serbixwe raporek nû amade bike, an jî malbat hewl bide ku doktorê ku rapor amade kiriye îkna bike da ku rapora xwe careke din di ber çavan re derbas bike.

**Dadgeh: An raporek nû an jî divê bijîşk helwesta xwe biguherîne**

Di hejmara Rûdawê ya 81.de derbarê Kerem Yalçin ê yek salî de nûçeyek hatibû weşandin ku Jugendamt a Bochumê roja 26'ê Çileya 2011'an ev zarok ji malbatê standibû û dabû malbateke Alman. Dê û bavên Kerem, Filiz û Faysal Yalçin jî dikaribûn di hefteyê de 5 caran, carê yek saet, herin zarokên xwe bibînin. Lê malbat niha dikare tenê di hefteyê de carek zarokê xwe bibîne. Piştî ku Malbata Yalçin di her hevdîtinan de zarokên xwe yê yek salî li maleke biyanî didîtin û pê xemgîn dibûn, ji bo zarokên xwe dîsa bînin mal, dest bi rêyên hûqûqî kirin û li himberê biryara Jugendamtê doz vekirin.

**Ji bo Kerem bigîhe dê û bavê xwe, divê doktorek serbixwe raporek amade bike**



Hefta borî, roja 17'ê Sibatê li Bochumê pirsgirêka Keram Yalçin di dadgehê de hat nirxandin, lê ti çareserî nehat dîtin. Bavê Kerem, Faysal Yalçin ragihand ku dadwer li gor raporan tevgeriyaye û gotiye heta rapor neyê guhertin ew nikare biryarek din bide. Yalçin wiha axivî: "Dadwer ji me xwest ku em hewl bidin bijîşkên serbixwe bibînin da ku li ser rewşa Kerem raporek amade bikin, wê dadgeh li gor vê raporê karibe biryarek erênî bide. An jî em herin doktorê ku rapor amade kiribû, Dr. Thomas Kamphausen, îkna bikin da ku rewşa Kerem careke din di ber çavan re derbas bike û dev jî sûcdariyê berde."

Doktorê Klînîka Essenê, Dr. Kamphausen di rapora xwe de gotibû, dibe ku Kerem ne bi xwe ketibe erdê, lê dibe ku malbatê lê xistibe û ketibe erdê û birîndar bûbe.

Jugendamt a Bochumê jî li ser rapora vê doktorê biryar girtibû ku zarok ji malbatê bê standin û bo malbateke Alman bê dayîn.

**Kamphausen di biryara xwe de israr dike**

Roja 21'ê Sibatê Faysal û Filiz Yalçin, ligel wan doktorekî Kurd diçin li Klînîka Essenê bi Dr. Kamphausen re diaxivin û biryara dadgehê jê re dibêjin. Faysal Yalçin derbarê hevdîtinê de wiha axivî: "Me jê re got ku rapora polîsan, nêrînên dadgehê û ya Jugendamtê erênî ye, tenê rapora te dibe sedem ku zarok ji me bê standin. Lê Dr.Kamphausen xwedî li rapora xwe derket û got jiber ku bûyer niha di destê dagehê de ye ew ne dikare tiştek bike û ne jî raporek nû amade dike, divê em hemû li benda biryara dadgehê bisekinin. "

Faysal Yalçin ragihand ku niha ew ê ji aliyekî ve li doktorekî norolog digerin ku karibe derbarê rewşa Kerem de raporek amade bike û bêje bi ketina erdê jî dibe ku zarok wiha xwe birîndar bike. Li aliyê din li himberê Dr.Kamhausen bi rêya E-Mailan, pêşandana nuçeyên rojnameyan, agahdarkirina çapemeniyê û civandina raya giştî kampanyayek destpê dikin.

# Kurdan yekemîn komeleya kulturî li Odense avakirin

▸Cîgira Serokê Komeleyê: Me daxwaz ji şaredariyê kiriye di demeke nêzîk de ciyekî bidin me.

▸Endamên komeleyê bi munasebeta Newrozê 'Grupa Dawet û Şanoya Kurdî' ya ciwan û zarokan dadimezrînin.

**Silêman Alîxan**



Wêne: Rûdaw

Endamên komeleyê bi hêvî ne ku di demekê nêz de cihekî bibînin.

Berî salekê Komeleya Kulturê Kurdî-Denmarkî li Denmarkayê, li bajarê Odense, hat avakirin û komel di 1'ê Çileya 2011'an ji aliyê şaredariya bajêr ve bi fermî hat naskirin. Armanca komeleyê, wek ku di malpera wan de hatiye nivîsandin bi rêya sazkirina çalakiyên cuda di nav civakê de xizmetkirina zarok, ciwan û malbatê ye. Cîgira serokê komeleyê, Çinar Hisên ji bo Rûdawê got: "Ev komeleya Kurdên ji her çar parçeyên Kurdistanê ye." Derbarê peyam û planên komeleyê jî, Çinar xan dibêje: "Bi giştî em dixwazin têgihiştina Kurdan ji bo kultura Denmarkî bi taybet û kultura rojava bi giştî berfereh bikin." Çinar dibêje ku rêxistinên partiyên Kurdan li bajarê Odense hene, lê "ev yekemîn komeleya kulturî ya Kurdî ye li vî bajarî."

Komeleya Kulturê Kurdî-Denmarkî komeleyeke Kurdan e, lê eger yekî ji neteweyeke din bixwaze bibe endam dikare bibe. Ji ber ku cihê komeleya navbirî tune ye, endam û rêvebirên wê civînên xwe li malên xwe saz dikin. Çinar Hisên dibeje ku wan daxwaz ji belediyê kiriye ku di demeke nêzîk de ciyekî bidin komeleya wan, an jî alîkariya wan bikin ku ew ciyekî ji xwe re kirê bikin." Cîgira Serokê Komeleyê eşkere kir ku niha 70 malbat endamên vê komeleyê ne û "hemû malbat ji bo berdewamkirina vê komeleyê gelekî bi coş in." Komele ji aliyê 9 endaman tê birêvebirin û her endamek 25 Krone Denmarkî weke aboneya mehane dide, ji bo ku karûbarên komeleyê bê meşandin."

Çinar Hisên ku di heman demê de xwendekara zanîngehê û mijûlî nameya xwe ya masterê ye, dibêje ku ji bilî mijûlbûna bi karûbarên komeleyê, ew û hemû endamên rêvebiriyê karekî derveyî jî dikin. Ww niha amadekariyen ji bo lidarxistina cejna Newrozê dikin: "Em dixwazin bi aboneyên endaman û bi alîkariya dostên xwe yên ne endam, Newrozê pîroz bikin, ji ber ku şaredarî ji bo van çalakiyan alîkarî nade." Wan herwiha amadekariyên xwe kirine û dixwazin bi munasebeta Newrozê 'Grupa Dawet û Şanoya Kurdî' ya ciwan û zarokan damezrînin: "Niha zarokan dest bi proveyan kirine, ji bo ku di şeva Newrozê de şanogeriyekê pêşkêş bikin."

Çinar xan, dibêje ew dixwazin bi rêya Komeleya Kulturê Kurdî-Denmarkî peywendiyê bi Kurdistanê re çêkin û ligel wan jî çalakiyan pêk bînin û xizmeta gelê xwe bikin.




# "Destê te bişkiyana Mahsûn!"

Rojnamevan Sevilay Yukselir dibêje serkêşiya pêvajoya ku Ahmet Kaya ber bi mirinê ve bir ne kesên weke Serdar Ortaç bûn, lê weke Ertugrul Ozkok ku zanibûn ji kê re û ji çi re xizmetê dikin.

Di civakên demokratîk ên pêşketî de bikaranîna zimanê zikmakî weke mafê xwezayî tê nirxandin, lê li Tirkiyê ev maf heta dawî tê binpêkirin û daxwaziyên bi vî rengî weke cûdakerî tên nirxandin. TRT 6 bi kurdî weşanê dike, lê Kurd nikarin bi zimanê xwe yê zikmakî perwerdê biwînin. Ji dewletê re kurdî serbest e, lê ji Kurdan re na. Ahmet Kaya 11 sal berê jiyana xwe ji dest da. Wî xwest straneke kurdî bistire, lê rastî lîncê hat. 11 sal ser re derbaz bû, lê ew şeva reş nehat jibîrkirin. Bêdengî û tirsonekiya wê demê niha bi dengê bilind tê ziman. Rojnamevan Sevilay Yukselir nêrînên xwe yê li ser wê şevê bi me re parvekir. Sedemê bêdengiya xwe ya wê demê, rexneyên ji bo kesên di wê şevê de Ahmet Kaya bêxwedî hiştin û kujerên wî, anîn ziman.

**Sevilay Yukselir dibêje Mahsun deyndar e û divê du caran lêborînê bixwaze. Divê ji malbata Ahmet Kaya, ji Kurdan û Tirkan lêborînê bixwaze**

**Rûdaw: Dîmenên şeva Komaleya Rojnemavanên Magazîn pir kêm hatin weşandin, lê di nivîsek xwe de hûn dibêjin 'min li dîmenên orîjînal temaşe kirin ku heta niha zêde kesekî wan dîmen nedîtine' Dema we temaşekir herî zêde çi bala we kişand?**

**Sevilay Yukselir:** Dema min li dîmenên orîjînal temaşekir bi rastî ez şoke bûm, lê ez herî zêde bi Mahsûn Kırmizigul re eleqedar bûm. Mahsûnê ku digot 'Min Roj Dît' bi taybetî dema Serdar Ortaç sîrûda 10.sal dibêje, li piya jê re li çepika dixe. Min pir meraq kir, gelo wê Mahsûn Kirmizigul ji bo vê çi bêje? Wê bêje 'Xweziya destê min bişkiyana' an jî wê bêje 'ma do doh bû îro jî îro ye'? Ger wisa be ma wê hinek jê pirs nekin û nebêjin, ka hesabê wan fîlmên ku tu îlhama xwe ji pirsgirêka Kurd digrî û xwe pê xwedî dikî, bide. Wê nebêjin 'Eyyy... Mahsun wê şevê şûna ji Serdar Ortaç re li piya çepik lêdanê, divê tu li gel Ahmet Kaya bisekiniya. Ger bisekiniya, ger tirsonekî nekiriba û weke îro bigota 'ez jî Kurd im haaa' û xwe ji Ahmet Kaya re bikira mertal dibû ku îro Ahmet hîn di nava me de bûya. Lewma ez dibêjim Mahsun deyndar e û divê du caran lêborînê bixwaze. Divê ji malbata Ahmet Kaya, ji Kurdan û Tirkan lêborînê bixwaze.

**Tenê Mahsun Kirmizigul an....**

Na. Wê şevê çend hunermendên din ku bi eslê xwe Kurd in, hebûn. Mînak Îbrahîm Tatlises. Ji bo min di navbera Mahsun Kirmizigul û wî de cûdabûnek mezin heye. Îbo weke Serdar Ortaç li gor pêwistiya çanda populer tevdigere, yê din îdeolojîk nêzîkî pirsgirêkan dibe. Beşdarbûyîna wî ya wê şevê, li hember lîncê bê dengmayîna wî dikaribû bihata fêmkirin, lê rabûna serpiya û tevlêbûna coşa Serdar Ortaç û şaklabanên weke wî mirov nikare fêmbike.

**Li Tirkiyê kesên ku dixwazin mezin bibin an nîjadperestiyê dikin an jî êrîşê Kurdan dikin. Serdar Ortaç jî wê şevê wisa kir...**

Ez bixwe li pey wî nakevim. Gelo Serdar Ortaç ji Tirkiyê hez dike an na. Wê şevê ji bo starta lîncê tenê berpirsiyariya gotina sîrûda 10.sal bibû para Ortaç. Îro ger heman şev bibe wê yekî din dîsa vê berpirsyariyê bicîh bîne. Li gor min divê mirov bala xwe bide helwesta wan kesên ku îro bi hunera polîtik rantê dikin. Kesên weke Mahsun Kirmizigul wê şevê helwesta wan çawa bû û îro xwe çawa didin nîşandan divê ev bê zanîn.



**Biyografî**

Sevilay Yukselir Ji Meletiyê ye. Malbata wê di sala 1979'an de koçberê Stenbolê bûne û li gor daxuyaniyên wê wan jî para xwe ji darbeya 12 Îlonê girtine. Li Zanîngeha Stenbolê beşa komunîkasyonê xwendiye. Di 1990'an de weke stajyer dest bi rojnamevaniyê kiriye. Di gelek saziyên çapemeniyê de xebitiye. Niha di rojnameya Sabahê de nîvîskariya quncik dike. Herwiha di Beyaz TV de heftê carê bernameyekê amade dike. Bavê wê û bavê Ahmet Kaya dostê hev bûne.

**Wê şevê hunermend Mehmet Aslantug û rojnamevan Savaş Ay piştgirî dan Ahmet Kaya. Ger hîn kesên din weke wan biçûna cem Ahmet Kaya li gor we wê şev çawa bi encam bibûya?**

Helbet wê bi rengekî din bibûya. Ji xwe ez jî dixwazim balê bikişînim ser wê yekê. Ew kesên li wê derê ger weke Aslantûg helwesta demokratîk nîşan bidana bawerim wê Ahmet Kaya hîn di nava me de bûya. Ger Kirmizigul wê şevê ji wan kêr û çetelan re bibûya sîper, li hember wan erîşan berxwedanî nîşan bida helbet encam wê bi rengekî din bibûya.

**10 sal berê Ahmet Kaya got ez ê kilameke kurdî bêjim, lê rastî lîncê hat niha jî bi rengekî din di rojevê de ye. Wek ev bûyer ne li Tirkiye, lê li welatekî din bûye. Tirkiye hat guhertin an na? Çi bû?**

Ev 5 sal in Tirkiye di nava guhertinekê de ye. Binêrin dema Ahmet Kaya hate linckirin min kar nedikir. Tevî hevjînê xwe min ew şev di televizyonê de temaşekir, bi rastî bêhna me çikiya. Hunermendekî ku jiyana me tev bi stranên wî derbazbuyî li pêş çavê me dihat lînckirin. Em bê dengî û veşartî giriyan. Ez jî hevjînê min jî wisa matmayî man, lê em dikaribûn derkevin kolanan û biqîriyana. Lê me nekir. Ji ber ku li Tirkiyê ew dem demeke tarî bû. Demek wisa bû ku mirov dihatin kuştin, kesên demokrat li ser pişta kêrê dijiyan. Hinekan kesên bi zimanê xwe yê zikmakî azadî dixwest zindî binax dikirin, bi milyonan kesên weke wî difikirîn jî bê dengî lê temaşe dikirin. Ev salên bi tirsê dagirkirî ne 100 sal berê, 11 sal berê bûn. Lewma ger niha rewşa îro û wê demê em muqayese bikin û nebêjin 'Tirkiye azad bûye' wê şaş be. Erê ez di zanim ev ne bes e lê em azad bûn, em guherin û wê guhertin hîn jî berdewam be.

**Mêrkujê Ahmet Kaya, Ertugrûl Ozkok e**

**Li Tirkiyê di her warî de Kurd bi nîjadperestiyê re rû bi rû dimînin. Çapmeniya Tirkiyê jî careke din bi weşanên li ser vê mijarê ev diyar kir. Di encamê de Ahmet Kaya jiyana xwe ji dest da. Weke rojnamevan hûn vê yekê çawa dinirxînin?**

Mixabin Ahmet Kaya bedêla nêzîkatiyên nijadperest, jihev cûdakirin û nêzîkatiyên antî-demokratîk bi canê xwe da. Lînca ku wê şevê pêkhat bi kampanyayeke qirêj ji aliyê çapemeniya navendî hinek kesan hat domkirin. Ew pêşengê çapemeniyê ku ji Ahmet Kaya re digotin 'bê şeref' hîn jî bêşerm kêfa xwe didomînin. Ji xwe li gor min Ahmet Kaya ne di wê şevê de, bi îftira û kampanyayên dû re hatin meşandin ve hat qetilkirin. Ger lînç wê şevê li wê derê bimaya, paşê nekirina manşet, di weşanên televîzyonan de dernexistana pêş, encam wê dîsa ne wisa bibûya. Li gor min serkêşiya pêvajoya ku Ahmet Kaya ber bi mirinê ve bir ne kesê weke Serdar Ortaç bûn, lê weke Ertugrul Ozkok ku zanibûn ji kê re û ji çi re xizmetê dikin, pêşengiya pevajoya qetilkirina Ahmet Kaya kirin. Mêrkujên rast ew in.

**Di ciwakên demokratîk ê pêşketî de zimanê zikmakî weke mafê xwezayî tê nirxandin. Lê li Tirkiyê daxwaza Kurdan a bikaranîna zimanê zikmakî wisa nayê pejirandin...**

Zimanê zikmakî mafekî demokratîk û mirovahî ye! Di cihanê de li ku derê dibe bila bibe ez ji dil hertim alîgirê bikaranîna zimanê zikmakî me. Ez ne Kurd im lê wê pirsgirêkê baş fêm dikim. Jiber ku ger li himberê zimanê minê zikmakî tirkî, heman çewisandin bibûya nêzîkatiya min wê ji ya îro ne cûda bûya.

*Hevpeyvîn: Arjîn Yaman*


Wêne: Rûdaw

## Stranbêj Deştî Kelhurî:

# li Kurdistanê tevgera şexsî bandor li hunerê kiriye

▶ Deştî Kelhurî: Min yekemîn karê xwe yê taybet ji helbesteke xwe û awazeke farsî tomar kir.

▶ Piştî çend rojan ji derketina berhema min, li bazaran hatibû kopîkirin û dihat firotin.

**Karzan Heyder** Hewlêr

Deştî Kelhurî deng û rûyekî nû di hunera stran û muzîka kurdî de ye, li Germiyan jidayik bû, li xerîbiyê jî stêrka wî çirisî û bi strana 'Dilbera min' di demeke kurt de jimareke zêde ya hezkeran li dora xwe kom kirin. Ev demeke Deştî xwe diwestîne ji bo ku tiştekî pêşkêş bike ku hêjayî hunera Kurdî be.

Berî 12 salan Deştî ji Kelar çû Almanya, wê demê qonaxa şeşê amadeyî xilas kiribû û li xerîbiyê xwendina xwe ne domand, lê berê xwe da huner û stranan.

**Rûdaw: Gelo derketina te ya yekemîn di warê hunerê de li ku bû?**

**Deştî:** Derketina min a yekemîn li Holanda bû, wê demê ez di konserekê de ligel komeke sîmofonîk a Holandî derketim ser dikê.

**Berê ti têkiliya te ligel hunerê hebû?**

Bi rastî eve demeke dirêje ez amadekariyan dikim, ji ber ku min nexwest bi nezanî tevlî warê hunerî bibim.

**Tu niha li derve ji bilî hunerê çi karên din dikî?**

Piraniya jiyana min ji bo hunerê ye, ez karên din jî bo debara jiyana xwe dikim.

**We çawa xwe di strangotinê de ceriband?**

Ez hewl didim di meqamên kurdî de bibim pispor û xwe fêrî hin aletên mûzîkê bikim. Min yekemîn karê xwe yê taybet ji helbesteke xwe û awazeke farsî tomar kir, mamoste Arif karê dabeşkirinê jê re kir, ev berhem tenê bi deng belav bûye ne wek klîp û gelek kes û hunermendan pêşwaziyeke germ lê kirin û sipasiya min kirin.

**Tu kanalên hunerî çawa dibînî?**

Roj bi roj baştir dibin.

**Bi baweriya te li Kurdistanê tevgera şexsî bandor li ser huner û muzîka kurdî kiriye?**

Erê, ev eşkere ye, lê divê kar bo xizmetkirina hunera kurdî be, lê ne her kes li gor kêfa şexsî û takekesî tevbiger e.

**Çima nasnavê te Kelhurî ye?**

Ez Kelhurî me û xelkê Germiyanê me, di albuma (Deba Bes Bê) de, min bi Kelhurî, Behdînî û Soranî stran gotine.

**Ew albuma te ya yekem e?**

Erê, min karên hunerî yên albuma (Deba Bes Bê) li Îran, Tirkiye û Ewrûpa pêkanîn, piraniya awazan ên min in û yek jî farsî ye, herwiha min bi xwe beşek ji gotinên stranan nivîsandine.

**Karê te yê nû çiye?**

Ez niha klîpekê amade dikim û gerek di demeke nêzîk de xilas bibe, herwiha dixwazim van rojan konserekê ligel komeke sîmfonîk a Holandî saz dikim ku tê de 150 muzîkjen û kurs beşdar dibin, ez ê bi 4 stranan tevlî vê konerê bibim.

**Kê ji vê kaosa hunera kurdî berpirsiyar e?**

Wezareta Rewşenbîrî ji her karekî hunerî yê baş û xerab berpirsiyar e.

**Berhema te ya nû ji kopîkirinê parastiye?**

Mixabin na, ji roja ku berhema min belav bû, ket ser piraniya malperan û pir bi hêsanî mirov dikare bar bike, piştî çend rojên din jî li bazaran hatibû kopîkirin û dihat firotin.

**Dixwînî?**

Erê, nemaze kitêbên li ser hunerê.

**Çend zimanan dizanî?**

Ez ji bilî zimanê kurdî, herwiha zimanên farsî, erebî û almanî jî dizanim.

**Werzişê dikî?**

Belê, ez spora Tenis û bazdanê dikim.

**Tu piştgiriya kîjan grûp û taximê dikî?**

Ez piştgiriya kluba Şêrwane û taxima Almanya dikim.

# Tara Resûl bi pere diaxive

**Hewlêr (Rûdaw) -** Stranbêj Tara Resûl ku niha di posteke bilind ê Wezareta Rewşenbîrî de dixebite, êdî bê pere daxuyaniyan nade medyayê.



Tara Resûl ku par bi yekcarî ji Swêdê vegeriya Kurdistanê, derbarê karê xwe yê hunerî yê herî nû û dûrketina ji medyayê, bo Rûdawê got: "Min biryar da ku ji niha şûnde bê pere ti hevpeyvîn û daxuyaniyekê nedim ti dezgeheke ragihandinê." Stranbêja Kurd sedemê vê biryara xwe jî ron kir û got: "Ti kes piştevaniya karên min ên hunerî nake, ev çend sal in karên xwe yên hunerî ji bêrîka xwe çêdikim, êdî ji ber çi ez ê bê pere daxuyaniyan bidim medyayê."

Tara Resûl ku di Adara 2010'an de vegeriya Kurdistanê niha bi pileya rêvebir li beşa peywendiyan a Wezareta Rewşenbîrî ya Hikûmeta Kurdistanê kar dike.

# Monica Bellucci di fîlmekî Behmen Qubadî de rol dilîze

Derhênerê navdar ê Kurd Behmen Qubadî ku niha fîlmekî nû çêdike got ku di vî fîlmî de aktora navdar a Hollywoodê Monica Bellucci, rola sereke dilîze.



Qubadî piştî çêkirina fîlmê xwe yê dawî bi navê (Haya kesî ji pisîkên Îranî nîne) niha fîlmekî nû amade dike û di vî warî de got ku di destpêka Adara 2011'an de, wê dest bi wênegirtina vî fîlmê bi navê (Demsala Kerkedanan) bike û pêşî li Tirkiyê dest bi kişandina wêneyên fîlm dike: "Di vî fîlmî de aktora navdar a Hollywoodê Monica Bellucci, rol dilîz, herwiha hinek aktorên dinên navdar ên Tirkiyê jî beşdariyê di fîlmî de dikin.

# Mahir Hesen tevî koma xwe diçe Ewrûpa

Hunermendê komedî Mahir Hesen derbarê karê xwe yê dramayê yê herî dawî got: "Ev demeke em fîlmekî ji bo televizyonê amade dikin û em dixwazin piştî geşta li derveyî welat, dest bi wênegirtina fîlm bikin."

Wek Mahir got ev drama karekî pir nû ye û bi awayekî pir ciwan hatiye darijtin, sînaryoya wê jî hatiye danîn, lê heta niha navê fîlm nehatiye diyarkirin. Mahir behsa geşta xwe ya ji bo Ewrûpa jî kir û got: "Di nîva meha Adara dahatû de em ê biçin Ewrûpa, di vê gera xwe de em ê şanoya (Daristan û Yasa wê) bo revenda Kurd li Swêd û Almanya pêşkêş bikin."Şanokar Mahir Hesen li ser vê berhema şanoyê got ku şanoya (Daristan û Yasa wê) 9. berhemê koma wan e û di sala 2009'an de zêdeyî 3 rojan li Silêmaniyê hat pêşandan.



# Ka ew mêrên pozberan?

Bawer Çem Amed

Li Amedê kesên ku ji bo estetîka poz serî li nexweşxaneyê didin, ji sedî 70 mêr in. Operator Dr. Alî Cemal Yilmaz, diyar kir ku Kurd piranî poz mezin in û serê pozê wan jî berjêr e, loma piraniya serlêderan jê daxwaza pozekî biçûk dikin.

Bi pêşveçûna teknolojiyê re ameliyatên estetîkê, di nava civakê de tên bikaranîn û li Amedê jî pir tê ecibandin. Klînîka Rekonstruktîf û Plastîk a Estetîkê li Nexweşxaneya Lêkolîn û Perwerdehiyê ya Amedê dest bi xizmeta estetîkê kir. Li vê nexweşxaneyê emeliyata bilindkirin, biçûkirin û mezinkirina çiçikan, tenikirina çîman, şidandina rû, bilindkirina biriyan, jiholêrakirina qermîçokên eniyan tê kirin. jmara jin û mêrên ku daxwaza ameliyatên estetîkê dikin, her diçe li Amedê zêdetir dibe. Operator Dr. Alî Cemal Yilmaz ku van emeliyatan dike, ji Rûdawê re got ku li Amedê herî zêde daxwaza "estetîka pozan" jê tê kirin û ji kesên ku serî li wan didin, sedî 70 mêr in û jin kêm in.

**Pizîşkekî ji Amedê dibêje ku pozê Kurdan mezin e, loma li vî bajarî mêr zêdetir pozên xwe estetîk dikin, ew dibêje ku jin jî dixwazin, "Lê mêr û bavên wan destûr nadin."**


Wêne: Rûdaw
Dr. Alî Cemal Yilmaz

### Mêr şerm dikin

Dr. Yilmaz da zanîn ku pozê Kurdan mezin û fireh e: "Li Amedê mêr zêdetir pozên xwe estetîk dikin. Helbet ev nayê vê wateyê ku jin naxwazin. Ji ber ku mêr û bavên wan destûr nadin, jin nikarin bên. Ji ber ku ev emeliyat bi pere ne û jin nikarin vî pereyî bidin. Ev yek jî dibe sedem ku kesên pozên xwe estetîk dikin ji sedî 70 mêr bin." Yilmaz da zanîn ku mêrên ji bo estetîkê serlêdan dikin, ji ber ku şerim dikin, rasterast daxwaza "estetîkê" nakin: "Hemû mêr an dibêjin ez di zarokatiya xwe de ketime, an jî dibêjin ez nikarim nefes bistînim. Hê jî wêrekiya daxwaza estetîkê tune ye. Em daxwaza serlêdarên xwe dinirxînin, lê hin kes tu çi dikî bike tatmîn nabin, ji halê xwe kêfxweş nabin. Piranî daxwaza pozên kesên ku di magazînê de derdikevin pêş dikin. Jin zêdetir pozê Petek Dinçoz dixwazin. Mêr ji şerma behs nakin, tenê dibêjin 'pozekî baş û xweş çêbike'. Em zêde bi gotina nexweşan nakin. Em hewl didin ku estetîkeke bi tendurist çêbikin."

### Yên di bin 30 salî de serlêdan dikin

Dr. Yilmaz got ku li bajarên Kurdan temenê kesên ku ji bo estetîkê serî li wan didin di navbera 18-30 salî de ne û got ku jin û mêr jî dixwazin xwe xweşik bikin. Dr. Yilmaz anî ziman ku kesên emrê wan ji 30'an zêdetir e nakevin nava metirsiyeke xweşikiyê: "Ger pirsgirêkeke jidil a tenduristiyê tune be, em estetîka ji bo kesên di bin 18 salî re qebûl nakin. Ji bo estetîka poz em di navbera hezar û hezar û 500 TL de pere distînin.

Lê emeliyatên ji bo çiçikan heta 2 hezar TL'î derdikeve. Her wiha ji bo kesên ku estetîk bikin, dibe ku korseya taybet, çiçikdang (sutyen), tampona poz lazim be. Em van tiştan jî bi nexweşan didin kirîn."

# Kuştina kerê Germiyan û hirçê zozan çû dadgehê


Kujerê Hirçê dibêje me digot qey me beraz kuştiye!

**▶Goran Ebdûlkerîm li ser kuştina kerê xwe şevekê hat girtin û bi kefalet hat azadkirin**

**▶Sekreterê Grûba Ker Gel: Ez dest ji wî kerkûjî bernadim heta cezayê xwe bigre!**

**Silêmanî - Hewlêr (Rûdaw) -** Ji bilî dozên li ser tawanên kuştin, dest dirêjî, dizî, şer û tawanên din ên li dadgehên Kurdistanê, gazinda kuştina ker û hirçê jî hat ser. Kesê ker kuştî şevekê hat girtin û heta roja dadgehkirinê bi kefalet hat berdan. Kesê bi kuştina hirçê jî tawanbar, ji bo dadgehê hatiye bangkirin. Parêzvanekî mafê keran dibêje: "Ya Xwedê dide, Kurd dikujin."

Roja 28'ê Kanûna 2008'an li nêzî dergehê sinorê Harbirê li navçeya Germik a girêdayî bajarokê Pêncwîn, li ser sinorê çiyayên wê navçeyê hirçek hat kuştin. Çîroka hirça kuştî di nava tarî û bêdengiyê de ma, heta rojekê wêneyê kesekê li gel wê hirçê bi rêya telefonên mobîl ji kesekî derbazî kesekî din bû û belav bû. Di dawiya rojên hatina 2010'an polîsên daristana Germik şikayeta xwediyê wî wêneyî kirin.

Rêvebirê binkeya polîsên Germik Xelîl Heme Elî hûratiyên wê bûyerê bo Rûdawê vegotin: "Eger wêne tunebûna, kesê nedizanî kê ew hirç kuştiye, lê diyar e hevwelatiyek bi navê Cebar Emer bi mobîla xwe wêneyek li gel hirça kuştî kişandiye û belav kiriye."

Xelîl diyar dike ku, Cebar Emer û hevalê wî, li dergehê Harbir kar kirine û hêj nehatiye yekalîkirin ku ew kujer in; "Lê wan wêne bi hirça kuştî re girtine." Ew rayedarê polîsê daristana Germik bi kuştina wî hirçî nerihet e, wek karê xwe dizane ku parastina daristan û ajelên kovî bikin. Navbirî dibêje: "Heta niha me zêdetirî 60 kesan li ser nêçîr û dar birînê dane dadgehê."

Biryar e di çend rojên pêşiya me de Cebar Emer bê dadgehkirin. Celîl Heme Elî dibêje: "Hêj ne diyar e wê çi ceza lê bê birîn." Lê Cebar Emer ji Rûdawê re got: "Me digot qey ku me beraz kuştiye."

Piştî çend rojên li ser şikayetkirina hirçê Kwêstan, şikayeta kerê li Germiyan hatî kuştin jî diçe dadgehê û dixuyê ku kerkûjê Germiyan, wê bi hêsanî rizgar nebe, ji ber ku sekreterê grûba Kergel a Kurdistanê giliya wî kiriye. Emer Kilol bi acizî ve got: "Ya Xwedê dide, Kurd dikujin."

**Goran roja 19'ê Çileya 2011'an hat girtin, şevekê li girtîgehê maye û heta roja dadgehkirina wî bi kefalet hatiye berdan.**

Roja 8'ê Kanûna 2010'an dema şivanek ê gundê Mile Sûre yê girêdayî navçeya Rizgarî yê bi navê Goran Ebdûlkerîm kerek da ber guleyan û kuşt, roja din ji wî gundî kesek Emer Kilol agehdar dike. Kilol dibêje: "Ez dest ji wî kerkûjî bernadim heta cezayê xwe werdigire." Emer Kilol rojek piştî kuştina kerê li dadgehê gilî dike; "Lê kesê ew kur nedigirt, ji ber vê yekê min her heftiyê di radyoyek a Germiyan de dikir hewar. Eger hikûmet nikaribe kerkujekê bigire, wê çawan ên jenosîd kirine, bigirin."

Hêj sekreterê grûba Kergel çarenivîsa şikayeta kerê hatî kuştin yekalî nekiriye. Nûçeya kuştina du kerên din bihîstiye; "Mixabin li ser rêya navbera Kelar-Xaneqîn kesekê bi serxweşî du ker kuştine. Em ê şikayeta wî jî bikin."

### Li Hewlêr û Duhokê kes nedane dadgehê

Rêvebirê daristan û rezên Silêmanî Rizgar Mihemed Axa diyar dike ku, li ser kesên ku destdirêjiyê li ser ajelên kovî û daristanan dikin, yasayên cezakirinê hene. Berpirsê Beşa Yasayî û Ragihandina Fermandeya Parastina Jîngeha Hewlêr Xalid Mela Hesen ji Rûdawê re diyar kir ku sala borî nêzî 50-60 kes li ser nêçîrkirinê destgîr kirine û lêpirsîn li gel wan kirine; "Ji wan 15 kes bi belge hatine girtin ku nêçîr kirine. Yên din jî sozname dagirtine ku carek din nêçîrê nekin."

Herwiha Berpirsê Parastina Jîngeha Duhokê Ebdûlkerîm Qasim di daxûyaniyekê de ji Rûdawê re diyar kir ku sala borî li gel 67 kesan lêpirsîn kirine. Ji wan jî 15 kes li ser nêçîra kewan, 37 kes li ser nêçîra masiyan û 15 kes jî li ser birîna daran lêpirsîn li gel wan hatine kirin. Herwiha di vê mehê de jî 27 kes li ser nêçîra kewan hatine girtin. Navbirî di dawiyê de destnîşan kir; "Me ti ji wan nedane dadgehê û me tenê sozname bi wan dane dagirtin."

## Naom Chomsky bo Rûdawê axifî:

# Rewşa Kurdistanê ji ya Misrê cuda ye

Ronakbîrê navdar yê amerîkî Noam Chomsky pirsa Kurd li Bakur û Başûrê Kurdistanê ji bo Rûdawê nirxand û hişyarî da ku divê Kurd di meseleya serxwebûnê de gavên xwe bi pîvan bavejin.

Noam Chomsky zêdeyî 150 pirtûk û sedan gotar nivîsandine. New York Times dibêje ku dibe Chomsky mezintirîn ronakbîrê vê demê be. Chomsky weke rexnevanekî tund ê polîtîka derve ya Amerîka tê nasîn û di nivîsên xwe de piştgirekî mezin ê milletên bindest e. Di sala 1975'an de Chomsky yek bû ji wan ronakbîrên ku nameyek derbarê rewşa dijwar a wê demê ya Kurdên Başûrê Kurdistanê ji cîhanê re nivîsîn. Di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de, Chomsky li ser doza Kurd li Îraq û Tirkiyê û pirsa çêbûna dewleta serbixwe nerînên xwe anîn ziman.

**Rûdaw: Di demekê de ku bûyerên mîna li Misir û Tunusê li Rojhilata Navîn diqewimin, em dixwazim nerîna we li ser rewşa niha ya gelê Kurd bi awayekî giştî li Îraq û Tirkiyê bizanin?**

**Chomsky:** Bi rastî ne tenê Îraq û Tirkiyê ye. Sûriyê, Îran û çend beşên Rûsya jî lixwe digre. Tu dizanî û pêwîst nake ji te re bêjim, ku Kurd mezintirîn gruba neteweyî û kultûrî ye ku qet nekariye herêmeke neteweyî (dewlet) bidestve bîne. Pêngav berbi pêşve hatine avêtin, wek mînak li bakurê Îraqê rêjeyek ji otonomiyê û rewşeke ewlekariyê ku berê nebû, niha heye. Pirsek heye ku çawa Kurdên Îraqê bikarin vê derfetê bikar bînin û civakeke bi tevahî hêja ji xwe re çêbikin û bibin modelek ji bo yên din jî. Li Tirkiyê, ku berî çend hefteyan li wir bûm, rewş baştir bûye. Cara yekem ku li wir bûm, berî nêzîka 10 salan bû, rewş pir metirsîdar bû. Bi taybetî piştî wê demê bû ku tundûtûjî, binpêkirin û wêrankirin gihiştibû asteke zêde. Xelk ditirsiyan rengên ku nîşana Kurdan e bikar bînin. Ne bi awayekî nehênî bûya nedikarîn bi zimanê xwe baxivin. Pêşveçûnek niha çêbûye û rengekî naskirina rewatiya nasnameya Kurdî ji aliyê hikûmetê û rêjeyeke zêde ya xelkê çêbûye. Eger êdî Kurd bi zaravên ecêb baxivin, wek "Tirkên çiyê" nayên binavkirin. [...] Di heman demê de, pêngavên berbi paşde jî tên dîtin. Dema Mijdarê li wir bûm, dadgehkirina 150 serkirdeyên Kurd ku hinek ji wan kesên bi nav û deng in, wek Serokê Şaredariya Bajarê Mezin ê Amedê Osman Baydemîr, birêveçû. Çalakvan ne kesên tund bûn û tometên wan bê wate bûn.

**Bi baweriya we ev pêşveçûnên ku we behsa wan kirin derencama wê rastiyê ne ku partiyeke Îslamî li ser desthilatê ye, anjî AKP bi serokatiya serokwezîr Recep Tayyip Erdogan?**

Dixwazim bêjim tiştekî aloz e. Lê guherînên erênî bi awayekî giştî çêbûn, bawer dikim siyasetên îdareya Erdogan pir watedar bûn, wek polîtîka "vebûna berbi rojhilat" û nebûna dijminan bi siyaseta "zero pirsgirêk ligel cîranan". Bi awayekî giştî, bawer dikim ev siyaseteke jîr e û pêşkeftin bidestve aniye.



**Lê vê dawiyê Ocalan daxwaz ji Kurdan kir ku tiştê Misriyan kir bo rizgarbûna ji Mubarek, li Amedê dûbare bikin. Got Kurd tenê dikarin azad bibin eger dakevin ser cadeyan û daxwaza mafên xwe bikin.**

Divê Kurd daxwaza mafên xwe bikin. Lê divê armancên xwe diyar bikin. Di rewşa Misrê de - wek mînak - armanc pir teng, lê zelal bû: rizgarbûna ji Mubarek. Piştre armanceke mezintir hebû: rizgarbûn ji desthilatê. Di rastiyê de, doh an berî çend rojan bû, bawer dikim, bo cara yekemîn ku grubeke çalakvanên mafên mirovan bi bernameyeke domdirêjtir bo bidestveanîna mafên siyasî û sivîl hatin pêş. Ev cara yekemîn bû ku ji 25ê Çileya paşin ve hatibe kirin. Ev zîrekî ye û pêwîst e bikin. Hevrikiyek tê pêş bo bidestveanîna van mafan. Pir desthilatên zordar hene ku bi hêsanî dev ji desthilatê bernadin. Tiştê Misrî dikin, modeleke erênî ye, lê mirov nikare li cihên din dûbare bike. Wek mînak, tiştê li Tunusê qewimî, ne wek bûyerên Misrê ye. Pirsgirêk û rewşa wan cuda ye. Ev bi heman awayî ji bo Kurdan jî derbas dibe. Divê bi haydarî bizanin ew rewş çi ne ku rastî wan tên û bipirsin di rewşeke wisa de çi plan baş e? Mebesta min ew e bêjim ev pirsgirêkeke kevin e û vedigere destpêkên bizavên şoreşgêr û reformxwaz ên sedsala 19'an. Niha birame wek mînak li tiştê ku Karl Marx derbarê şoreşê nivîsî. [...] Dibe ku Marx rast bûbe û dibe xelet jî bûbe, lê helwêsta giştî ya ku çêbû ew bû ku divê tu taktîkan li gor rewşa heyî saz bike. Yasayekî mêkanîkî nîne ku ji te re bêje taktîkên rast kîjan in.

**Hûn anarşîst in û pişgirek mezin ê 'berxwedana sivîl' (Civil Disobedience) in. Hûn ne di wê baweriyê de ne ku dema wê yekê hatiye Kurd li Tirkiye tişta ku Misriyan kirin bikin, heta ku dewletek demokratîk li Tirkiyê bê avakirin?**

Bila berxwedana sivîl bikin, ez bi xwe çend caran tevlî bûme, hatime girtin û cezayê domdirêj li min hatiye birîn. Lê ev taktîk e û ne prensîb e. Armanca serekî ya berxwedana sivîl ew e ku kesên din jî tevlî berxwedanê bikin. Ji ber vê yekê hinek caran ev taktîkek baş e û hinek caran jî ne baş e. Dema tê ser Kurdan jî, Kurd nikarin li ser cadeyên Amedê xwepêşandanan bikin û bêjin em dixwazin ji serok rizgar bibin. Ev taktîkek ji bo gihiştina armancên wan nekêrhatî ye. Lê ev yek li Misrê û Qahîreyê taktîkek kêrhatî ye. Lê li Amedê ne taktîkek kêrhatî ye, ji ber ku rewş cûda ye. Eger li bîra we be nerazîbûnên Misrê, di dema temambûnê de bûn, wêrekî û sorbûn nîşan da û heya niha jî armancên pir teng bûn: Pêwîste Mûbarek biçe. Ev armancek bû û armanca Kurdan li Tirkiyê, bakûrê Îraqê, yan jî her cihekî din, li gel Misrê nayê berhev kirin. Mebesta min ew e ku armancên Kurdan firehtir in. Dubare, mafê sivîl in û divê ji xwe bipirsî, ji bo wê armancê çi taktîkek baş e? Erê 'berxwedana sivîl' arîkare yan jî rêyên baştir hene? Problemek pir hestyar e. Heya ez hewldanekê jî nadim ku ti amojgariyan ji derve pêşkêş bikim. Pêwîstî bi nirxandinek hûr ya rewşê û encamên ku tên texmînkirin heye.

**Niha gelek mirov dibêjin dema wê yekê hatiye ku Kurd ji Îraqê cûda bibin. Dibêjin piştî bûyerên li Rojhilata Navîn niha dema herî baş e ji bo Kurdan ku ji Îraqê cûda bibin. Hûn di vê derbarê de çi dibêjin?**

Bi baweriya min gelek pirs hene ku pêwîste bi cidî biryar li ser bên dayîn. Yek ji wan jî Erebên Îraqê ne. Bêgûman ew bi awayek dijwar li dijî vê yekê radiwestin. Dibe ku Tirkiye dijberiyê bike. Bi mîsogerî wê Îran dijberiyê bike. Encama dawî ev e, li bakûrê Îraqê xebata ji bo îlankirina Kurdistanek serbixwe û heya eger bê cîbicêkirin jî, bi xwe gelek cihê pirsyarê ye. Dibe welatek derkeve holê û ti dergehek wê ji bo cîhana derve nebe. Ev wêrankarî ye. Lewra her xebatek ku di vî alî de biçe, divê bi hûrî em fikra têkiliyên li gel herêm û welatên cîran bikin.

**Eger em balê bikşînin ser pirsa Kerkûk û navçeyên din ên cihê nakokiyan, hinek kes li vê derê di wê baweriyê de ne ku dema hêzên Amerîka ji Îraqê vekêşiyan, dibe ku li ser wê navçeyê şerê Kurd û Ereban pêk be. Heya ku derê egera vê yekê heye?**

Tu ji min baştir dizanî. Di rastiya xwe de ez ne di wê baweriyê de me kes bizane. Ez ne di wê baweriyê de me hêzên Amerîka vekêşin. Wisan diyar nabe, lê ev problemek mezine. Min heya niha ti pêşniyarek jîr li ser Kerkûkê nedîtiye. Ez ne di astek wisan de me ti pêşniyarek bi wate di wê derbarê de têxim ber çavan.

**Lê bi rastî hûn di wê baweriyê de ne ku hêzên Amerîka vekêşin? We di hevdîtina berê de got, Amerîkiyan "Îraq negirtine ji bo jê vekêşin".**

Bi rastî ez nizanim. Ji bo vekêşanê girêdanek heye, lê cûdahiyek mezin navbera girêdanbûn û kiryarê de heye. Mînak, temaşeyî wan bingehên leşkerî bike yên ku Amerîka li Îraqê dirûst kirine. Bi rastî zanyariyên pir kêm derbarê wan de hene. Lê qasî ku her kes pê dizane, hêj di dirûstkirinê de ne. Ya jêre tê gotin konsûlxaneya li Bexda, bi rastî bajareke di nava bajarekî din de ye. Li cîhanê ti konsûlxaneyek bi vî awayî nîne û ji bo vê yekê hatiye dirûstkirin ku bi cih bihêle?

## Ti dostê Kurdan nînin ji bilî çiyayan

**Bi baweriya hinek kesan wê Amerîka baregehek leşkerî li Kurdistanê damezirîne?**

Gomana min li ser wê yekê nîne ku Amerîka dixwaze wî karî bike. Erê pêwîst e Kurdên Îraqê cîh û rê bidinê, ev pirsek din e. Bi baweriya min nabe Kurd wisan bikin. Ez ne di wê baweriyê deme ku fikrek baş be ku Herêma Kurdistanê li herêmê bibe baregehek leşkerên Amerîka. Ev ji bo çewisandinê rê xweş dike, şidet, şerê berdewam û heya dawiyê. Amerîka li Rojhilatê Tirkiyê xwedî baregehên serbazî yên mezin e û niha bi qasî berê destê wê nagihe wan baregehan ku bikarbîne. Mebesta min ew e ku baregeha leşkerî bi sedem dadimezrîne. Ji bo çewisandinê dadimezrîne. Ji bo herêmê tişta herî baş ew e ku xwe ji bin destê hêzên împeratoriyan rizgar bikin.

**Lê Kurdên li Îraqê di dîrokê de ne xwedî cîranên dost bûn, ew Amerîka wekî hevpeymanên dilsoz dizanin.**

Girîng e hinek tişt li bîra me bin. Li bîra we ye salên 1970'an, dema ku Kurdan baweriya xwe bi Amerîka anîn û heya ku li berambêrî Îranê wan biparêze. Amerîka ew firotin û komkûjî pêk hat. Di rastiya xwe de tu ji min baştir gotina Kurdan ya dibêjin "Ji derveyî çiyan ti dostê Kurdan nîne" dizanî. Ev pir rast e. Tu nikarî baweriya xwe bi hêzên derve bîne. Ew li pey berjewendiyên xwe dikevin û ne li pey berjewendiyên te. Dibe ku sazkirina hevpeymana demî bi sûd be. Lê tu nikarî baweriya xwe bi hêzên derve bîne. Kurd vê yekê ji hemû kesî zêdetir dizanin.

***Hevpeyvîn: Namo Ebdulla***

*Tevaya hevpeyvîna ligel Noam Chomsky di **www.rudaw.net** de bixwîne*

# Bazara Bexdayê dîsa dikeve destê Kurdên Feylî

▶Kurdên Feylî wek qada aboriyê di gelek qadên din de jî her tim yekem û sereke ne

**Kawe Şêx Ebdulla**

Piştî salên 1948'an ku Cihûyên Iraqê hatin talankirin û çûn Îsraîlê, Kurdên Feylî li Bexdayê cihê wan girtin û bazarê xistin bin kontrola xwe. Ev serdestiya wan di bazirganiyê de heta dawiya sala 1979'an domand, paşê ketin ber êrîşa rêjîma Beisê, ku Îraq li wan kirin dojeh. Feylî bi wê serweta xwe ya zêde û alîkariya şoreşa Kurd, li ber çavê Partiya Beisê reş bûn. Ango dewlemendiya Feyliyan li Iraqê li wan bû bela û ji ber vê yekê piraniya wan ji Iraqê hatin derxistin.

Niha Kurdên Feylî li Bexda careke din bazirganiyê dixin destê xwe. Macid Elwan (57), li Bexda xwediyê şirketeke mezin bazirganî ya giştî ye: "Em Kurdên Feylî li Îraqê di aliyê bazirganî de dikarin careke din bibin hêzeke mezin, jiyana asayî li me vegeriyaye, êdî dewlet me binpê nake."

Li Bexda, Kurdên Feylî li navçeyên Kîfah, Şorêce, navçeya Cemîle, Medîne Sewre, Kazmên, Horiye û Dore dijîn. Her çiqasî derbarê hejmara wan de serjimêriyeke hûrbîn nine jî, lê gor texmîna hinek çavkaniyan hejmara wan zêdeyî 630 hezar kesan e. Navçeya Kîfah cihê kombûna piraniya wan e.

### "Divê siyasetmedarên Kurd Feyliyan nêzî Hewlêrê bikin"

Cemal Cefer (42) ji bo wezaretên hikûmeta Iraqê xwediyê kargeheke mezin a çêkirina amûrên mezin e: "Em niha di serwextê serkeftinê de ne, tiştekî ku di serdemê Saddam de ji me hatibû standin niha em tê de destvekirî ne, loma geşbîn im ku Feylî dikarin bigihin rewşa berê."

Rêveberê Xwendingeha Tahire, Kazim Ebû Mistefa bi paşeroja Feyliyan li Bexda pir geşbîn e û dibêje: "Nifşê nû yê Feyliyan wek yên berê nehatine tirsandin, loma em dikarin bêjin dahatûya Feyliyan pir baş dibe."

Macid ê bazirgan jî giliyan dike ku PDK û YNK piştî ketina Saddam, nikarîbûn sûdê ji enerjiya Feyliyan werbigrin. Tevî ku Feylî herdem şanaziyê bi rabirdûya xwe dikin ku alîkariya şoreşa Îlonê kirine, lê wisa dibînin ku PDK û YNK li Bexda ji dêlva Feyliyan bikin yek, wan belawela kirin.

Kazim Ebû Mistefa ragehand: "Pêdiviya me bi alîkariya partiyên siyasî yên Herêma Kurdistanê heye da ku bikarin ji bo doza Kurd, ji Kurdên Feylî li Bexdayê sûd werbigrin. Berê ev nekirin, lê divê niha bikin."

Eger siyasetmedarên Kurd li Bexda dest ji Feyliyan bernedin, Kurd dikarin ji bilî hêza mirovî, hêza wan a aborî jî bo berjewendiyên xwe yên netewî bikar bînin û wan ji Necefê bêtir, nêzîkî Hewlêrê bikin. Lê rabirdûya wan dide xuyakirin ku ew herdem nêzîktirî neteweya xwe bûne û qurbaniyên mezin jî dane.


Wêne: Rûdaw
Kurdên Feylî li navçeyên Bexda dijîn û hejmara wan li derdora 639 hezar kes tê texmînkirin

### Feylî di gelek tiştan de yekem in

Berê Feylî dewlemendên mezin bûn, lê niha hê piraniya malên wan li taxên hejarnişîn û xaniyên kevin de ne. Li Kîfah dîwarên kevin bi wêneyên îmam Huseyîn hatine nuxumandin.

Feylî di gelek tiştan de yekem in. Yekemîn yaneya sporê li Bexdayê, ji aliyê Kurdên Feylî hat damezrandin. Yekemîn seroka Yekîtiya Jinên Kurdistanê bi navê Zekiye Îsmaîl Heqî jineke Kurdê Feylî bû. Herwiha yekemîn komkujî li Îraqê di sala 1980'an de li dijî Kurdên Feylî hat kirin; rêjîma Beisê mêrên ku temenê wan di navbera 15-45 salan de bû kom kirin û wenda kirin, ku heta niha jî cihê gorên wan nayên zanîn. Hejmara wan wek zêdeyî 18 hezar kesan dihat texmînkirin, ku dadgeha bilind a tawanan li Bexda ev wek "jenosîd" nasand.

# Awamedica li Kurdistanê dibe yekem marka

▶Dermanxane û xelk kalîteya berhemên Awamedica bi bandor, lê biha dibînin

**Namo Ebdulla**
**Roj Ehmed**

Sala 2006'an, Dr. Behram Resûl ji Swêdê hat Herêma Kurdistanê da ku karekî bike ku berî wî ti kesî nekiriye: Çêkirina kargeheke berhemanîna derman. Di heman sale de Şirketa Awamedica damezrand. Li Hewlêrê ev zêdeyî salekê ye berhemên wê li bazarên Kurdistanê, ku hema bêje hemû tiştî ji derve tîne, tên firotin.

Berhemên Awamedica ku piraniya wan peyva kurdî ya `awa` li ser wan e, li dermanxaneyên Kurdistan û hinek bajarên Îraqê peyde dibin. Lê bi ser de jî kaxezên hişyariyê yên ku bi her dermanekî re hene, bi zimanê îngilîzî, erebî û kurdî jî ji aliyê Awamedica tên çêkirin. Herwiha li Hewlêrê heta niha 21 texlîtên heb, şirûb û melhemên ji bo hinek nexweşiyên ku li Kurdistanê pir tên dîtin, çêkiriye.


Wezareta Tendirustiyê wê ligel Awamedica girêbesteke îmze bike

Dr.Behram Resûl ragihand ku ew hewl didin bi rêya dermanên xwe, dermanên ku niha li dermanxaneyên Kurdistanê hene û piraniya wan ne tenê bê bandor in, lê bi ser de jî sextet nene, bê rewac bikin û got: "Bi awayekî sexte navê welatên Ewrûpî li ser piraniya van dermanan hatiye nivîsandin. Em pîvanên Ewrûpî peyrew dikin. Ji destpêkê û heta derman tê çêkirin, qalîte tê kontrolkirin."

Dr. Behram diyar kir ku heta niha ji bo kirîna dermanan, Wezareta Tendirustî bi awayekî serekî pişta xwe bi Awamedica girêdaye: "Maqûl e hersê wîlayet daxwaza heban bikin û di salekî de bigihe 700-800 hezar heban. Em dikarin ji vê zêdetir heban çêbikin."

Carna dihat gotin ku nirxê dermanên Awamedica giran e, lê di hevpeyvîneke bi Rûdawê re, Wezîrê Tendirustiyê Tahir Hewramî ragihand: "Di demeke nêzîk de em ê ligel Awamedica girêbestekê îmze bikin. Bawerîya me bi dermanên Awamedica heye. Li gor tiştê ji me re pêwîst e, em ê derman ji Awamedica bikrin."

### Nirxê wan biha ye û xelk wan nas nake

Doktor û dermanxaneyên Hewlêrê, behsa du sedemên kêm firotina dermanên Hewlêrê dikin: "Dibêjin nirxê wan giran e û ya din jî hê xelk wan nas nake. Kes nabêje qalîteya heban kêm e."

Doktorekî dermanxaneyeke Hewlêrê ku nexwest navê wî bê eşkerekirin, daxuyand: "Hinek derman hene li cihekî bi 150 dînaran e, lê heman derman eger ji aliyê Awamedica bê çêkirin, bi 4 hezar dînaran tê firotin. Giliyê ti kesî ji bandora dermanên Awamedica nînin."

Dr. Behram ev rexneyan rast nabîne û dibêje "Dermanên me ji dermanên biyanî ku guman jî li ser wan hene, ne girantir in. Hinek dermanxane hene nikarin qalîteya me bişikînin, radibin propaganda dikin. Ti dermanê me ku nirxê wê bigihe 5 hezar dînaran nîne."

Hemza Osman (42) li dermanxaneya Beyar li Hewlêrê got ku ew 12 texlîtên dermanên Awamedica difiroşin û baweriyê bi wan dikin: "Heta niha xelk wan baş nas nake. Kesên ku dermanên Awamedica dixwin fêdeyeke mezin ji wan dibînin."

Lê Dr. Behram ji tiştê ku li Hewlêr û Dihokê ji wan tê kirîn, ne razî ye û dibêje piraniya kiryarên dermanên wan ji Silêmaniyê ne: "Silêmanî 4 caran li Dihokê û 3 caran bi qasî Hewlêrê dermanên Awamedica bikar tînin. Qalîteya dermanên me pir bilind e."

# Tîma U17 favoriya şampiyonî ye

▶DalKurd xwe ji bo sezona nû amade dike: 4 futbolvanên nû transfer kir

**Rûdaw (Swêd) -** Klûba DalKurdê beriya ku sezona 2011/2012 detpê bike ji her alî de kete nav amadekariyan. Kongreya xwe ya salane li dar xist û perspektîfa sala nû wek 'derbasbûna lîgeke jor' diyar kirin. Serokê DalKurdê Ramazan Kizil sala borî wek Sala Reş binav kir û got em ê kêmasiyên sezona borî dubare nekin. Kizil daxuyand ku wan 4 futbolvanên nû transferê tîma xwe kirine û tîma wan a Futsalê U17 ji bo şampiyoniya Swêdê favorî ye.




Wêne: Rûdaw

**Di sezona nû de wê 26 maçên DalKurdê bi rêya înternetê zindî bên temaşekirin.**

### Kizil: Sala borî sala reş bû

DalKurd di sezona borî de nekaribû derbasî lîga jor bibe û di tabeleyê de wek 6. sezonê girt. Serokê Klûbê Ramazan Kizil sala borî ji bo DalKurdê wek, 'Sala reş' binav kir û got, "Dema me DalKurdê damezirand me Lîga Super a Swêdê ji xwe re kir armanc. Lê mixabin sala borî performansa me nebaş derket, em di lîga xwe de sekinîn. Em ê kêmasiyên sezona borî dubare nekin û meşa xwe ya ber bi jor ve bidomînin." Di çarçoveya amadekariyên sezona nû de wek ku Kizil daxuyand DalKurdê 4 futbolvanên nû yên profesyonel (yek ji wan forvetê Tîma Syrianska Peşrew Ezîzî ye -Kurdê Rijhilatê) standiye û hewl dide ku yekê din jî bistîne. Wek ku Kizil ragihand 3 lîstikvên nû, ne Kurd in û rêjeya lîstikvanên Kurd û ne Kurd di DalKurdê de nîve nîv e. "Taybetmendiya DalKurd ê wê her tim bimîne, ango wê rêjeya futbolvanên Kurd danakeve binî nivî"

Tîmên rezerv ên DalKurdê yên temenê wan 16, 17, 18 û 19 salî jî bal dikişînin ser xwe. Di turnovaya şampiyoniya Futsalê (futbola salonê) de ya tîmên U17, tîma DalKurdê giha rêza 8. Wê di rojên 26, 27 û 28'ê Sibatê de li bajarê Goteborgê ji bo fînalê 8 tîm maçan bileyîzin û wek ku Ramazan Kizil got, "Em favorî ne û bawer dikim ku em ê bibin şampiyonê futsalê."

### Em li benda Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne

Klûba Dalkurdê çend meh berê wek ku Rûdawê jî ragihand, pilan kiribû ku di destpêka meha Adara 2011'an de ji bo çendîn beşdarbûn, lîstikên dostanî û organîzasyonan, here Herêma Kurdistanê. Serokê Klûbê Ramazan Kizil (wêneyê rastê) daxuyand ku ligel serdanên wan heta niha ji aliyê rayedarên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ti bersiv negirtine. Kizil wiha axivî: "Me bi rêya Wezîrê Spor û Ciwanan ê berê Taha Berwarî, daxwaza xwe diyarî Hikûmeta Herêma Kurdistanê kir. Serokê Lîjneya Olîmpik a Kurdistanê, Mele Bextiyar jî agahdar e, lê heta niha mixabin me ti bersiv negirtiye."

Kizil derbarê armanca çûyîna wan a Herêma Kurdistanê de jî got "Em dixwazin bi tîmên Herêma Kurdistanê re têkilî deynin, bi wan re maçên dostanî bileyîzin, ji bo pêşerojê organîzasyonên hevbeş li dar bixin, Helebcê ziyaret bikin û li Hewlêrê Newrozê pîroz bikin."



Wêne: Rûdaw

### Kongreya xwe li dar xist

DalKurdê roja 22'yê Sibatê li Dalarnayê kongreya xwe ya salane li dar xist. Kongre di malpera DalKurdê www.dalkurdff.se de zindî jî dihat temaşekirin, bi beşdarbûna nêzikê 200 endaman dom kir. Beriya kongreyê Serokê Klûbê Ramazan Kiliz pirsên Rûdawê bersivand û got ew ji bo sezona nû dîsa amade ye û got, "Kongreya me bêhtir wê di aliyê organizasyonan de perspektîf û guhertinên nû bîne."

## Diyarbkirspor dikeve, Erganispor tê

# Ji bo lîga 3'em 90 deqe man!



**Ji Amedê du agahiyên berevajî: Diyarbakirspor di dîroka xwe ya 42 salî de cara yekem e ku wê dakeve lîga sêyem, lê tîmeke din jî Amedê ji lîga herêmî ber bi lîga 3. ve dimeşe. Ji bo Erganispor derbasî lîga 3. bibe li pêşiya wê tenê maçek heye.**

**Erganispor niha di Lîga Herêmî ya Amator de, di Grûba 2. de lîder e û piştî du hefteyan lîg bi dawî dibe. Eger Erganispor di maça dawî de li himberê Cilo Yuksekovasporê di deplasmanê de tenê 1 pûan bistîne, an jî tîma li dû wî tê, Bitlis Ozguzelderespor di her du maçên dawî de pûan winda bike, wê Erganispor derbasî lîga 3. bibe û bibe 4. tîma Amedê ku di lîgên Tirkiyê de cîh digre.**

**Erganispor hefta borî di deplasmana Semsûrê de ligel Adiyaman Belediyesporê di deqeya yekem de 1-0 kete pêş û piştî 15 deqeyan gola duyem avêt û maçê 4-1 bi dawî kir.**

**Hefta bê maça Erganisporê bi tîma ku ji lîgê hatiye derxistin, Birecik Belediyesporê re heye, lê maç nayê leyîstin û wê Erganîspor 3 pûanan bigire.**

**Di navbera Erganispor û tîma duyem Bitlis Ozguzelderesporê de 3 pûan heye.**

## Abonetiya Rûdaw

Abonetî

Ez dixwazim ji bo dema

☐ Şeş mehan ☐ Salekê ☐ Vekirî

bibim aboneyê/ya rojnameya Rûdaw.

Rojnameya min heftane bişînin vê navnîşanê

Nav : ____________________
Paşnav : ____________________
Navnîşan : ____________________
____________________

Telefon a min : ____________________
E-Mail a min : ____________________

Buhayê abonetiyê ji vê kontoyê bikşînin;

Hejmara kontoyê : ____________________
Şîfreya bankê (BLZ) : ____________________
Bank : ____________________
Xwediyê kontoyê : ____________________

Dem û cîh: ____________ Destnîşan: ____________

Anjî ez ê bihayê abonetiyê bişînim ser kontoya Rûdawê ya li jêr û dekontoya wê ji navnîşana Rûdawê re bişînim.

Bihayê abonetiya salekê ji bo nav Almanya: 60Euro
Bihayê abonetiyê şeş mehan ji bo nav Almanya: 30Euro
Ji bo abonetiya derveyî Almanya, pêwendî ligel Rûdawê deynin.

**Hesabê Rûdaw**
Rudaw Media GmbH
**Bank** Deutsche Bank Köln
**Konto Nr** 2450161
**BLZ** 37070024

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
info@rudaw.eu



# Îranê heyfa xwe ji PDK'ê hilanî

Rêbiwar Kerîm Welî

Berê xwe bidin vê tesadufê! Roja 29'ê Çileyê yanî berî çend hefteyan, Tevgera Goran daxuyaniyek belav kir û daxwaza hilbijartinên pêşwext û hilweşandina hikûmetê kir, dîsa wê rojê ji bo protestokirina îdama çalakvanên Kurd ji aliyê Îranê di xwepêşandaneke moletkirî de, hejmareke xwepêşanderan bi keviran êrîşî konsolxaneya Îranê li Hewlêrê kirin û ew dan ber keviran û tabloya konsolxaneyê şikandin û bi vê yekê jî nesekinîn, wêneyê Xamineyî û Xumeynî çirandin. Dîsa di heman rojê de jî li gor agahiyan, Sekreterê Giştî yê Yekgirtuya Îslamî mamoste Selahedîn Behaedîn li Tehranê bû!

Gava Goran daxuyanî derxist, diyar bû partiyên Îslamî yên li parlamentoyê piştgiriya tevahî nadinê, lê wisa kirin ku `ne şîş bişewite û ne jî kebab`, helwêsta wan ne ligel Goran bû û ne jî wisa bû ku ne ligel bin. Bi kurtî, piştî wê demê û bi taybetî jî civîna dawî ya Goran û Yekgirtu li ser meseleya hevkarî û alîkariya di warê opozîsyonê de, ji bo pêngavên wan ên dû re hevdengiyek çêkir. Di bûyera Silêmaniyê de rola Yekgirtuya Îslamî roleke eşkere ye û nayê înkarkirin, rast e Goran li pişt beşekî zêde yê civîna cemawerî li berdergehê Serayê bû, lê Goran bi fermî ne ligel wê yekê bû ku berê bûyeran bi vî awayî here û ev yek jî di ronkirin û daxuyaniyên Goran de diyar e. Yekgirtuya Îslamî, alîgirên kevin ên di Komelê de, beşekî rêveberên Goran rêveçûna bûyeran guherand û ev jî xwesteka serekî ya Îranê bû ku heta niha berpirsên PDK'ê amaje pê nakin, lê PDK baş dizane ku Îran bi rêya Îslamiyan û dost û peywendiyên xwe dixwest di navbera PDK û Goranê de fitîla şer vêxîne, lê neçû serî.

Karbidestên YNK'ê li Silêmaniyê û milmilaneya di nav berpirsên asayişa Silêmaniyê de wisa kir ku PDK bibe nîşan. Îro gelek xelk ji dost û hevalan herwiha hinek ji yên ku di nav xwepêşandana berdergehê Serayê de bûn, dipêjin ecêb e li cem me ku êrîşa Liqa 4'ê ya PDK'ê hat kirin! Ji xwe PDK li Silêmaniyê ne hakim e û tiştek di destê wê de nîne û ne jî desthilata gendelîkirina wê jî li vî bajarî, hebû! Ev pirsgirêka karbidestên PDK'ê ye jî. Lê bersiva vê pirsê pir hêsan e, ji bo xwepêşandanekê ku rêveberên wê tenê girêdayî Yekgirtuya Îslamî û alîgirên Îranê bin, ti armanc bi qasî baregeha PDK'ê ne giring e. Çima? Yekgirtu hê jî şewitandina baregeha xwe ya li Duhokê di sala 2005'an de ji bîr nekiriye, eger wê rojê baregeha PDK'ê bihata şewitandin, wê heyfa bûyera Duhokê hilanda. Gava wêneyên Xamineyî û Xumeynî li pêşiya konsolxaneya Îranê li Hewlêrê tên şewitandin, Îran jî dixwaze baregeha PDK'ê bê kevirbarankirin û cemedaniyên sor bên şewitandin!

> Yekgirtu Îslamî hê jî ji şewitandina baregeha xwe ya li Duhokê di sala 2005'an de ji bîr nekiriye, eger wê rojê baregeha PDK'ê bihata şewitandin, wê heyfa bûyera Duhokê hilanda. Gava wêneyên Xamineyî û Xumeynî li pêşiya konsolxaneya Îranê li Hewlêrê tên şewitandin, Îran jî dixwaze baregeha PDK'ê bê kevirbarankirin û cemedaniyên sor bên şewitandin!

**Rola YNK'ê çi bû?**

Hê ji roja ku Tevgera Goran hat damezirandin, YNK'ê şerê xwe yê îdeolojîk ligel Goran bi wekalet bi PDK'ê dida kirin. PDK'ê jî milê xwe li ber milê Goran daniye û wisa dizane eger Goran nemîne hemû pirsgirêk çareser dibin. Di vê bûyera ku li Silêmaniyê qewimî de, Mam Celal jê derxe, karbidestên YNK'ê yeko yeko bi vê rewşê kêfxweş bûn. Xwepêşandana li dijî gendelî û desthilata xerab a YNK'ê ya li navçeya Silêmaniyê û Germiyan, rûyê xwe welgerand şerê di navbera PDK'ê û xelkê Silêmaniyê de! Yan jî bi kêmanî şerê di navbera PDK'ê û Tevgera Goran de!

Nêçîrvan Barzanî pir bi awayekî hekîmane ligel bûyeran tevgeriya û rewş berbi kenarê aramiyê ve bir, ji ber hemû aliyên li beramber ji tometbarkirinê dûr xist, û hem jî cemawerên PDK'ê jî aram kir û ji wan re got li himberê êrîşkirina ser PDKê li Silêmaniyê dest nedin dezgeh û saziyên aliyan.

Eşkere ye ku xizmên Îranê di nav partiyan de dixwestin rewş bibe wek sala 1994'an, wek çawa di wê salê de PDK û Sosyalîst rûbirûyê hevdu bûn û piştre YNK'ê rewş kontrol kir, wisa jî dixwest PDK êrîşî Goran bike, û dû re di navbera wan de navçîtiyê bike! Di hemû rewşan de jî YNK û sazî û dezgehên wê yên ewlekarî, leşkerî û îdareya Silêmaniyê, ji wê rewşa ku li Silêmaniyê di encama xwepêşandaneke ne yasayî û moletnekirî de qewimî, berpirsiyar in. Ku parêzgarê Silêmaniyê berî şevekê got amadekariyan xwe kirine da ku tevlîhevî çênebin. Êdî ecêb e ku ji baregeha rêxistinên demokratîk ên YNK'ê jî teqe li xwepêşanderan hat kirin, lê kes behsa vê yekê nake!

Niha pêwîst e hikûmet hisab û kîtabeke ciddî bike, ka ji ber çi bûyer qewimî; herwiha êrîşa ser baregeha Liqa 4ê ya PDKê û birîndarbûn bila bên eşkerekirin. Li Silêmaniyê bi dirêjiya herdu hilbijartinên 2009 û 2010'an de polîs, asayiş û hêzên dijî terorê li hemû cihekî amade bûn ku bûyer lê çêbûbin, çawa bû di 17'ê Sibatê de ku pêştir jî agahdar bûn, wisa ne diyar bûn?

Kesên ku li Silêmaniyê êrîş birin ser baregeha PDK'ê û kesên ku li Soran û Hewlêrê baregeha Goran şewitandin, divê bên destnîşankirin û li gor yasayê ligel wan reftar bê kirin. Pêwîst e PDK hêzên xwe ji Silêmaniyê vekişîne, divê serokê hikûmetê vî karê birêve bibe, da ku aliyek wisa hest neke guşarên leşkerî yên aliyekî din li ser e. Pêwîstiya PDK'ê li Silêmaniyê bi hêzê nîne, ji ber naxwaze şer bike, li wir parastina baregehên wê jî erkê hikûmetê ye. Nêçîrvan Barzanî jî ew yek red kir ku kesek girtibin û daxwaz ji xelkê Silêmaniyê kir ew baregehên PDK'ê biparêzin.

Madem PDK şer nake, hêzên wê dibin sedem ku xelkê Silêmaniyê wek êrîşkar li PDK'ê binêrin, nemaze ku serokê Tevgera Goran hebûna hêzên Mam Celal û Kosret Resûl jî li Silêmaniyê wek hêzên biyanî wesif dike!



# Welatê ku ne ji bo nifşên xwe be, ew jî nikarin ji bo wî bimirin!

Ebdûrehman Sedîq

Piraniya penaberên Kerkûk û navçeyên veqetandî yên din, şev û rojê di hizir û fikra wan de xak hebû. Di dema penaberiyê de bi dehan helbest û pexşan jê re nivîsandin. Derbarê erdnîgarî û dîrokê pirtûk nivîsandin, lê bi vegera ji bo himbêzkirina welatê xwe di rastî de li pişt nebûnê, bê xizmetî, hejarî û bê edaletiyê de, xelk vegeriyan û hest bi hebûna berê ya welat nakin.

Kesên ku welat li bîra wan bû, wêneyên welat bi dîwarên odeyên sar û vale ve hilawîstibûn, dema vegeriyan û welatî tiştek ji wan re nekir, derfetên kar ji bo wan nehatin dîtin û himbêz nekirin, ew li welat nebûn xwedî xaniyekî sed metrî û bi neçarî bûn kirêçî, wê demê hebûna welat bi wan re nema, tevî ku li derve, welat di fikir û dilê wan de bû!

Dema ew li dûr û li welatên xerîbiyê bûn, ji Îraqê re digiriyan û ji Îraqê re stran digotin. Ew li benda rojekê bûn ku vegerin. Îraq di dilê wan de wekî welat cihê mezinahiyê bû, lê hatin û di welatê xwe de hest bi xerîbiyê kirin. Welat çi ji wan re nekir û ti nedanê, welat ji bo wan jiyan nekir, ew jî ne amade bûn jê re bimirin, ji ber vê yekê grûp-grûp vegeriyan welatên xerîbiyê ku bi kêmanî jiyaneke bi hurmet ji wan re misoger kirine.

> Kesên ku welat li bîra wan bû, wêneyên welat bi dîwarên odeyên sar û vale ve hilawîstibûn, dema vegeriyan û welatî tiştek ji wan re nekir, wê demê hebûna welat bi wan re nema.

Ev mînakana hemû ji me re dibêjin ku li cem xelkê me 'Hebûn' a welat di 'Nebûn'ê de ye, ji ber ku dema tu li derveyî welat bî, wê demê hebûna welat heye, lê dema tu têyî welat û temaşe dikî ku dibînî ku ew welat tune yê ku te ji dûr ve dixwest ji bo te mal, derfeta kar, cihê hewandin, azadî, lêpirsîn, mafê yeksanî û edaletê misoger bike.

Herwiha kesên ku jiyana xwe ji bo welat û mafên mirovan terxan kirin, di dawiyê de û ji encama pêkhatina xewnan û temaşekirina cûdahiya navbera tiştê ser kaxez û tiştê ser erdê, wan ev ezmûn weke ezmûna xwe nedîtin û mikûriyê li ser kirin. Wek ku tu bêjî tişta li ser erdê, weke wê derneket a ku wan li ser daxwazê plan kiribû.

Ango gelek tişt di dema 'Nebûn'a wan de, hebûn, lê di dema hebûna wan de dibin 'Nebûn.' Wê demê mirov hewlek din dide yan jî rûdine. Erkê anîna 'Hebûnê' jî dispêrin mirovên din û bi berdewamî bazine jî bi vî awayî di tevgerê de ye!!



Dr. Îbrahîm Gunêş*

## Sînuzît

Sînuz peyveke latîniye dema ku valahiya hestiyê rûyê mirovan ji îltîhab tije dibe jê re nexweşya sînuzît tê gotin.

Nexweşiya sînuzît di nav gel de pir tê xuyakirin. Sînuzît ji mîkrob û îltîhabê peyda dibe. Dema ku sînuzît neyê tedawîkirin îltîhaba çêbûyî xwe dighîne çav û dibe sedema korbûna mirov.

**Sedemê nexweşiya sînuzît çiye?**

**Dr. Îbrahîm Gunêş:** Ev nexweşî bi piranî îltîhabeke, sînuzît bixwe peyvek latîniye ji şikefta kêleka poz tê. Du cureyên sînuzît hene yek jê akute û ya din jî sînuzîta kronîke. Sînuzîta akut ji nexweşiya zekemê destpêdike, ev ji vîrus û bakteriya çêdibe pêre di enî bêvil, rû, cena jor îdap digre û ava poz diherike. Zekem di 7 rojan de rihet nebe hingê xwe vedigerîne nexweşiya sînuzît, herwiha gelek cara jî alergî dibe sedema sînuzît, çermê hindirê bêvilê diherişe û derbasî îltihabê dike bakterî çêdibe.

**Nîşanê vê nexweşiyê çine?**

Sînuzîta akut nîşanê wê herikandina bêvilê, êşa serî, bilindbûna germa bedenê, êşa çav û êşa eniyê. Ev nîşan bi sînuzîta kronîk jî derdikevin pêşberîme wextê ku nexweşî 2-3 meha zêdetir be û hertim nexweşî xwe nû bike, hingê ev tê wê wateyê ku hin di şikefta pozde bakterî hene, dema ku grîp, zekem, alergî hebe wê demê sîstema berxwedana canê mirov kêm dibe û nexweşî çêdibe.

**Şêweya dermankirinê çawa ye?**

Piranî tedawî bi antîbîotîk, kortîson, antîmîotîk û homopatiyê ji gul û sosina çedibin tê dermankirin, an jî hinek derman hene ku li mal tê çêkirin; mînak ava şor ku pozê xwe pêdişon, ji ber ku berê ava deryayê dihat bi karanîn an jî rêbaza emeliyat, aspîrasyon îltihabe bi xortumê ve dikşînin û paqij dikin, lê bi vê rêbazê xilas nabe carek dî dîsa tije dibe. Emeliyat ji sedî 80'î baş dike û sedî 20 dîsa xwe dubare dike. Dema ku polîp hebe aspîrîn an jî ambrokson girtin baştire. Avê pir wexwin dermanê înhalatsion, krêma tev ava germ bikin û bikşînin pozê xwe û lempa ultrerot bidin ser çavê xwe.




**Kî di bin rîzîkoya nexweşiya sînuzît de ye?**

Nexweşiya Sînuzit dikare bi her kesî re derkeve, lê herî pir ew mirovê zekem, grîp, alergî yanî nexwesiyên vîrus û Bakterya derbazkiri bin di dema xwe de û nehatibin tedawikirin.

**Komplikasiyona Sînuzît dibe ku çav îltihab bigire û kor bibe**

2. Meninjit (Cerma mîjiyê serî îltîhab bigre)
3. Koka Dirana û Hestiyê çenê îltîhab bigre.
4. Dibe sedema xirxirê.

Ji ber wê jî pêwîste mirov pir baş li xwe miqatebin, berxwedana sîstema bedena xwe bilind bikin, spor bikin, xwarina tije vîtamîn bixwin, hewa paqij bigrin, xwe bi avasar û germ bişon, serê xwe germ bipêçin, wextê ku bi grîpê dikevin hişk ne pişikin, bêvila xwe hişk paqij nekin ji ber ku hingê dibe bakteriya di hundir de belav bike. Ew mirovê nexweşê sînuzîta kronîk be pêwîste ku hertim dibin kontrola bijîşk de be.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Îbrahîm Guneş ji Bakurê Kurdistanê ye û niha li Almanyayê dijî. Pisporê nexweşiyên hundirîn û pisporê jiyana tenduristiya xwarin û vexwarina ye.*

## Xaçepirs

**Çeperast:** - Guhdarkirin, bihîztin – Jina ku di malê de jêhatî ye, xwedî marîfet e. 2- Teref, hêl – Nanê ku di tenûrê de çêdibe. 3- Şert û lîztikek ku bi hestîyên mirîşkê tê lîztin – Bajarekî Kurdistanê (berepaş) – Telîsê hinekî zirav û mezin. 4- Paq, navbera ling û kulîmekan (berepaş) – Wek şaîr, bi şaîr ve girêdayî – Roja înê ye.5- Nav û deng, şohret – Agir, namûs. 6- Çerm, ûr – Cejn e, şahî ye. 7- Dengê kûçikan – Qirdik, qeşmer. 8- Navekî zilaman. 9- Xwedênenas, bê bawerî – Gotin û şîretên mela (berepaş). 10- Notayek – (...Teron) lîztikvanek sînemayê

**Serejêr:** 1- Nameya salê, almanak – Namûs, heya. 2- Navekî jinan (berepaş) – Mane, naverok. 3- Navekî zilaman. 4- Notayek (berepaş). 5- Mexlûqatên bi ruh – Biaqil, jêhatî, zekî. 6- Damar, çare – Serokê/ka belediyê. 7- Mirov, meriv, beşer – Paşa, mîr. 8- Mêrê bizinê – Fileh, alîgirên Îsa. 9- Helahopî, bêaqil, dînik. 10- Neheqî, êrîş, piçûkkirin – Notayek. 11- Yan, yan jî. 12- Meaş, mehane. 13- Agir e, dişewitîne. 14- Kesê bi rêve diçe, seyranî. 15- Redkirin, qebûlnekirin (berepaş). 16- Cewrik, cewrikên heywanan.




## Hefta pêş me çalakiyên Kurdan

**"Rewşa zimanê kurdî li komarên Sovyeta berê û niha"**

Komeleya Nivîskarên Kurd Li Swêdê di 26'ê Sibata 2011'an de semînerekê ji bo nivîskar Têmûrê Xelîl amade dike û hemû dildarên ziman û edebiyata kurdî vedixwîne wê çalakiyê. Semîner di demjimêr: 13:00 bi navê "Rewşa zimanê kurdî li komarên Sovyeta berê û niha" û li navnîşana nû ya Kitêbxaneya Kurdî ya Stockholmê tê saz kirin.

**Navnîşan:**
***Gustavslundsvägen 170, ALVIK (Medborgarhus)***

**Tara Caf diçe Stenbolê**

Hunermenda Kurd Tara Caf di 25'ê Sibata 2011'an de li Stenbolê konserekê dide.

Dem: 25'ê Sibatê 2011
Saet: 20:00
Cîh: Istiklal Caddesi, îmam Adnan-Nane Sok. No 5 Kat. 4 Beyoglu/Stenbol

**Falakaddîn Kakeyî li Stenbolê semînerekê dide**

Serokê Komeleya Dostaniya Kurd û Tirk û wezîrê karê rewşenbîrî yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê yê berê Falakaddîn Kakeyî li Stenbolê semînerekê dide. Mijara semînerê: Dostaniya Kurd û Tirkan.

Dem: 26'ê Sibatê:
Saet:15:00
Cîh: Tarlabaşi Bulvari Çorbaci Sok.13 Taksim/Beyoglu/Stenbol

## Peyamên xwe ji Rûdawê re bişîn

Xwendevanên hêja,
êdî hûn dikarin peyam û îlanên xwe ji me re bişînin, ew ê belaş li vir werin weşandin. Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me **(info@rudaw.eu)** ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir biweşînin.

# Larîn bû yek salî!



Wêne: Rûdaw

Larîn keçeke Kurd e. Dê û bavê wê ji Amedê ne. Navê wê bi rastî jî Larîn e, ne Lorîn. Larîn li bajarê Almanya Bonnê çêbûye. Larîn yekşama bihorî (20.02.2011) ket yek saliya xwe. Wê rojbûna xwe bi xwûşka xwe ya mezin Liyan û bi malbata xwe pîroz kirin. Larîn niha pir kêm dikare bipeyive û tenê peyvên kurdî dizane.




## Tu navên mehan bi kurdî dizanî?

| Kurmancî | | Soranî |
|---|---|---|
| Çile | 1 | Befranbar |
| Sibat | 2 | Rêbendan |
| Adar | 3 | Newroz |
| Nîsan | 4 | Nîsan |
| Gulan | 5 | Gulan |
| Hezîran | 6 | Cozerdan |
| Tîrmeh | 7 | Pûşperr |
| Tebax | 8 | Xermanan |
| Îlon | 9 | Gelawêj |
| Cotmeh | 10 | Gelarêzan |
| Mijdar | 11 | Rezber |
| Kanûn | 12 | Sermawez |

## Ajalê herî mezin li ser erdê dijî kîjan e?



Ajalê herî mezin ku li ser erdê dijî Fîl e. Xwarina fîl giya, fêkî, pel û tîvilên daran e. Fîl dikare rojane bi qasî giraniya sê mirovan xwarinê bixwe. Dugiyaniya fîlan 660 rojan dewam dike. Giraniya fîl nêzîka 7000 kîlo ye, yanî 7 ton in. Fîl li Afrîka û Asya dijîn



Ç
A
Ş
H
Î
G
B

EVÎN
SOT
EWIR
AVÎN
MED
AV
ARÎN

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

## Fêrî kurdî bibe

Çç چ چ

ÇAV  چاڤ

Çakûç  چاكوچ